ÇAPA EWROPA
# RÛDAW
ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA

*Stranbêja îsraîlî Hedasa Yeşurun:*



*Dema bi kurdî stranan dibêjim hêstiran di çavên wan de dibînim*

» 9



## Îstixbarata swedî tê tewanbarkirin

# KURD MECBÛRÎ SÎXURIYÊ KIRIN

3 »

Hejmar / Nr. 208
25 Tîrmeh / Juli 2013

| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

4 191631 701506 00030

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## Dadgeha spanî pêlava wî weke "çek" hesiband

» 6



Endamê DBKê, Aldar Xelîl:

## Di bûyera Amûdê de doza lêborînê dikim!

» 10 / 11

# Keça kurd bû yekema Tirkiyeyê

**Hêmin Xoşnaw**

Keçeke kurd a 15 salî di ezmûnên astbilind de, bo qonaxa amadeyî li ser asta hemû Tirkiyeyê pileya yekê bidestxist. Bavê wê keçê dibêje: "Yekembûna keça min yekembûna Kurdan e."

Ezmûna SBS (diyarkirina astê) li Tirkiyeyê ji bo wan xwendekaran tê kirin ku qonaxa seretayî diqedînin û dixwazin herin qonaxa amadeyî. Edalet Bînîcî (15) xelka bajarokê Silopî li Bakurê Kurdistanê û di ezmûna SBS de bû yekema hemû Tirkiyeyê. Edaletê karibû bersiva hemû pirsan bi awayekî rast bide.

Edalet ji malbateke hejar a deverê ye û çar xuşk û birayên wê yên din hene. Îbrahîm Bînîcî yê bavê Edaletê şofêrê kemyonê ye û berheman ji bajarên Bakurê Kurdistanê vediguhêze deriyê sînorî yê Îbrahîm Xelîl. Dema keça wî ew serkeftin bi dest xistiye, Îbrahîm Bînîcî li ser kar bû, wî ji Rûdawê re got: "Dema min nûçe bihîst mijûlî kar bûm, pirr kêfxweş bûm û min nedizanî çawa kêfxweşiya xwe nîşan bidim" Li gor bavê Edaletê, "yekembûna keça wî yekembûna Kurdan e, ji ber ku ji malbateke kurd û li devereke Kurdan ji dayik bûye."

Bavê Edaletê nexwende ye, lê hemû zarokên wî dixwînin û dibêje hemû wek Edalet zîrek in: "Spas ji Xwedê re ku zarokên din jî zîrek in, birayê mezin ê Edaletê Rezwan li kolêja bijîşkî ya zanîngeha Stembolê dixwîne."

Edalet Bînîcî bi xwe qet ne di wê hêviyê de bû ku bibe yekema Tirkiyeyê û ji Rûdawê re got: "Tenê min dixwest xwendina xwe dewam bikim, min nedixwend da ku yekem derkevim, qet nedihat xeyala min ku yekem derdikevim. Bi kurtî, yekemderketina min ji min re sûprîz bû." Edalet derbarê şertên xwendina xwe de wiha dibêje: "Li mal odeyeke taybet ku tê de bixwînim nebû. Birayê min jî ne li mal bû ku alîkariya min bike, lê gava vedigeriya alîkariya min dikir. Li dibistana taybet min bêpere dixwend, ji ber ku di ezmûnên wan de jî yekem derketim."


Bavê Edaletê, Îbrahîm Bînîcî: "Yekembûna keça min yekembûna Kurdan e."

# Bano Raşid û qurbaniyên din tên bibîranîn



**Koln (Rûdaw) -** Di 22yê Tîrmeha 2011ê de li Osloyê bombeyek li pêş avahiya serokwezîrê Norweçê teqiyabû û bibû sedema mirina heşt kesan. Du seetan piştî teqîna bombeyê, li ser girava Utoya kuştareke mezin di nav kampa ciwanên Partiya Sosyaldemokrat ya Norwêçê de pêkhat, 69 kes hatin kuştin. Di nav yên kuştî de keça kurd ya wê demê 18 salî Bano Raşid jî hebû.

Kesê ku kuştar pêkanîbû nijadperestê norweçî Anders Behring Breivik bû û wî diyar kir ku bi vê bûyerê wî xwestiye Norweçê li hemberî Îslamê biparêze û sedema ku wî li kampa Sosyaldemokrat daye ew bûye ku vê partiyê derî ji pêlên Misilmanan re vekiriye. Breivikê wê demê 32 salî paşê ji aliyê dadgehê ve bi 21 salan girtîgeh hatibû mehkûmkirin.

Bano Raşid weke yekemîn qurbaniya kuştarê hatibû veşartin û wêneyê wê li seranserê cihanê belav bibû. Malbata Bano Raşid sala 1996ê ji Başûrê Kurdistanê berê xwe dabû Norwêcê. Van rojan li gellek bajarên Ewropayê çalakiyên bîranîna kuştarê tên lidarxistin.

# Jinebiya kurd herêma xwe da dadgehê




**Koln (Rûdaw) -** Jinebiyeke kurd a 71 salî ku niha li bajarê Almanya Sendenê dijî, xwest ku mala xwe bibe cem keça xwe ya li bajarê Mainzê dijî. Lê li ser pasaporta jina penaber hatiye nivîsandin ku ew nikare mala xwe ji Sendenê bar bike û mafê rûniştinê jî bi vî şertî dane wê.

Piştî hevjînê wê di Îlona par de mir, wê xwest ku mala xwe bibe cem keça xwe ya li bajarê Mainzê dijî. Lê ji ber ku daîreya biyaniyan li dijî vê daxwaza jinebiya kurd derket, wê jî herêma Coesfeld, bajarê ku ew daîreya biyaniyan pê ve girêdayî ye, da dadgehê.

Van rojan dadgeha îdarî ya li bajarê Munsterê li ser dozê civiya, lê ne biryarek êrênî û ne jî ya neyînî da. Wê tenê bang li daîreya biyaniyan kir ku careke din li ser biryara xwe bifikire. Ji hêla din ve, bi navê bajarê Mainzê jî, ji daîreya biyaniyan ya wî bajarî ji jinebiya kurd re hatibû diyarkirin ku ewê arîkariya wê ya diravî neke, eger ew mala xwe bîne wî bajarî.

Berdevkê herêma Coesfeldê, Josef Voss, jî diyar kir ku diviyabû wan destpêkê destûr daba jina kurd ku mala xwe bar bike û diyar kir ku sedema ku wan destûr neda jina kurd ew bû ku bajarê Mainzê li dij hewandina jina kurd derketibû.

Hêjayî gotinê ye ku eger dadgeh anjî daîreya biyaniyan ya bajarê Coesfeldê şertê mayina jinebiya 71 salî li herêmê rake, wî wextî jinebî di hilbijartina cihê rûniştina xwe de azad dibe û hemû herêm wê neçar bimînin ku destûrê bidin malbarkirina wê û arîkariya wê ya diravî jî bikin.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.





## Du alternatîvan datînin pêşiya wan:

# Yan sîxurî yan dersînorkirin

**Stockholm (Rûdaw) -** Istixbarata swêdî (SÄPO) hewl dide ku kesên kurd bike sîxur. Herwiha li gor gotina pisporekî swêdî jî, hewlên vê ajansê yên peydakirina sîxuran di nav revenda kurdî de vedigerin salên heştêyan ji sedeya borî. SÄPO wek ajansa istixbaratî ya swêdî ya sereke tê dîtin, ew herwiha di nav lîsteya îstixbaratên cihanê de yek ji yên navdar e.

Armanca vê ajansê ji peydakirina sîxuran di nav revenda kurd de ew bû ku çalakvanên kurd kontrol bike û zanyariyên bêhtir derbarê wan de peyda bike. SÄPO tê tewanbarkirin ku guşareke derûnî ya zêde li ser wan kesan kiriye ku xwestiye ew ligel wê kar bikin. Ev mijar heftiya borî bû babeta sereke ya radyoya fermî ya Swêdê jî, û vê yekê gellek axaftin û behs di nava raya giştî ya vî welatî de bi xwe re anîn. Bi taybetî jî ku guman heye ku çend kes bi sedema van guşaran ji Swêdê derketibin, heta ku hinek hatibin kuştin û bûbin qurbanî jî. Ya ku ev dezgeh kiriye tengasiyê ew e ku hinek kes wek şahid axivîne û zanyariyên metirsîdar derbarê karê dezgehê ji radyoya swêdî re eşkere kirine.

Adem û Metîn du çalakvanên kevin ên siyasî yên kurd in. Wan ji bo radyoya fermî ya Swêdê gotine ku piştî ew razî nebûn ku ligel vê dezgehê kar bikin û zanyariyan bidinê, jiyana wan zehmet bûye û ketine bin çavdêriyê. Ev radyo dibêje ku ew Kurdên ku bi eşkereyî karên siyasî dikin, bi behaneyên corecor piştî demekê mafê panaberiya wan ji wan tê standin. SÄPO jî bi rêya wan sîxurên kurd ên ku hene zanyariyan derbarê çalakiyên Kurdan de dicivîne. Weke ku Adem dibêje: "Ez gihiştime wê baweriyê ku her tiştê me di bin kontrola wan de ye." Ji ber ku, wek ew dibêje, "eger civanek, yan dema hatina mêvanekî me hebe, wan beriya me dizanîbûn." Adem û Metîn dibêjin "dema ku bang dikirin, digotin eger hûn neyên, emê we bi zorê bînin."

Vê çavdêriyê piştî wê yekê destpêkir, ku çend caran hewl hatiye kirin ku ew ji bo vê dezgehê kar bikin. Li gor axaftina wan, girankirina çavdêrî û komkirina zanyariyan derbarê wan de ji sala 1991ê heta 2005ê de berdewam bûye.

Nivîskar û rojnamevanê di warê şopandina polîsî û istixbaratî de şareza, Jan Guillou, dibêje ku "ajansa istixbaratî ya swêdî ji salên heştêyan ve li dû wê yekê ye ku kesên kurd bike sîxur. Niha jî ev hewla xwe firehtir kiriye." Guillou, ku bi xwe berê kar bi vê dezgehê re kiriye, dibêje: "Ew gel û neteweyên ku xebata wan a siyasî ya berfireh heye, li cem SÄPO cihê guhdan û tew metirsiyê ne jî. Lewma pirr guhdanê pê dide û yekem netewe jî ku sepandin li ser bûye ku sîxuriyê tê de pêk bîne, Kurd bûn."

Raporta radyoya swêdî teqez dike ku vê ajans karîneke darayî û mirovî ya mezin xerc kiriye ji bo gihiştina vê armancê. Di vê çarçoveyê de jî astengî ji bo jiyana wan kesan pêk aniye, ku razî nebûn vî karî bikin. Adem û Metîn jî ji wan in. Ev herdu çalakvanên kurd dibêjin ku wê dema ku polîs bi wan re rûniştin, hemû ew tiştên ku kirine ji wan re nîşan dane. Adem



Jan Guillou

dibêje "axaftinên di navbera me û hevalên me de, bi şev û roj, li cem wan hebûn." Weke ku ew behs dikin, bi fermî û nefermî dihatin dozkirin û dorpêçî li ser wan dikirin. Adem û Metîn dibêjin ku ew herdem di bin guşarê de bûn. Gefa standina mafê mana wan li vî welatî yek bû ji amrazên guşarê. Weke ku Metîn dibêje "êşkenceya derûnê dikin, da ku em kar bi wan re bikin."

Yek ji wan kêşeyên ku hatiye ber wan Kurdên ku razî nebûn karê sîxuriyê bikin, li gor gotina Adem û Metîn, "bêkarî û giraniya jiyanê bû." Eşkerebûna vê doze niha hikûmeta Swêdê kiriye tengasiyê, bi taybetî piştî ku li medyayên ewropî û navendên parastina mafên mirovan bûye cihê axaftin û behsê.

Li gor raporta radyoya swêdê, piştî ku çavdêriyeke xurt dikin û piştre digihijin wê baweriyê ku ew karê siyasî nakin, kontrol û çavdêriya li ser Adem û Metîn kêm dikin. Wan ji radyoyê re gotiye: "Ji ber guşara SÄPO me dest ji karê siyasî berdaye." Li beramber van hemû tometbariyan, SÄPO bersiveke sar dide. Serperiştê çapemeniya vê ajansê Frîdrîk Nîlson dibêje: "Pêwendiya SÄPO bi jiyana taybet ya kesan ve nîne. Dest jî naxe nav bawerî û karên taybet yên kesekî. Guşarê jî li ser kesekî nake."

Di bersiva fermî ya polîsê istixbaratî de ji bo doza Adem û Metîn, tê gotin ku "desttêxistina me ya yekser di jiyana van kesên de nîne ku têne Swêdê. Ev pirs pêwendiyên wan bi dezgeha koçê ve hene. SÄPO dest naxe van karan, ji pêvî ku kesek cihê metirsiyê be û rewşeke wî ya taybet hebe, weke terorist."

Lê Guillou zanyariyên balkêş ji bo radyoyê eşkere dike: "Ev Kurdên ku wek penaber tên Swêdê, di dozên xwe de behsa zanyariya hestyar derbarê partiyên xwe de dikin. Yan behsa doza xwe ya siyasî dikin. Wek mînak kesek bi navê Ehmed zanyariyên wî li ser PKKê hene, piştre SÄPO tê kar li ser dike." Ev rojnamevan her li ser mînaka berê dibêje: "Zanyariyên Ehmed li ser PKKê hene. Mal û zarokên wî jî li Amedê dijîn. SÄPO du rêyan li ber datîne: Gelo em alîkar bin ji bo anîna mal û zarokên te, ku tu jî kar ji me re bikî? Yan rêya duyem hildibijêrî ku ew jî vegerandina te jî bo welatê te ye?" Ev nivîskar dibêje "hinek Kurdan di bin vê guşarê de xwe dan dest û bêyî daxwaza xwe bûne sîxur. Beşek ji wan jî bi neçarî ji Swêdê derketin."

Di sala 1984ê de li bajarê Opsala du çalakvanên kurd bi navê Enwer Eta û Çetîn Gungur hatin kuştin, ku berê ligel PKKê kar kiribûn. PKK bi kuştina wan hat tometbarkirin. Li gor daxuyaniyên vî nivîskarê swêdî jî, ev yek ji mînakên neçarkirina bi karê sîxuriyê, yan vegerandin û zindankirina li Amedê ye. Serencam jî, bi sedema eşkerekirina zanyariyên derbarê PKKê de ji bo SÄPO, herdu hatin kuştin. Ev jî, li gor daxuyaniya vî nivîskarî, piştî qebûlkirina mercên SÄPO bû. Guillou eşkere dibêje ku SÄPO alîkarê vê bûyer û kuştinê bû. Herwiha behsa hevahengiya herdu ajansên swedî û tirkî (SÄPO û MIT a tirkî) jî di gellek pirsan de dike.

Di nivîseke fermî ya vê ajansê de tê diyarkirin ku pêwendî û hevahengiya SÄPO ya fermî ligel hemû dezgehên pêwendîdar ên welatên din heye ji bo pirsên hevbeş, bi taybetî hewlên pêşîlêgirtina terorê. Nivîskar Jan Guillou dibêje ku eger mirov çalakiyên SÄPO yên niha ligel çalakiyên wê yên dema kuştina Olaf Palme berhev bike, çalakiyê SÄPO îro duqat bûne û "nîvê xebata SÄPO ya îro li ser "terorîzma islamî" ye. Ew niha bi dû Îslamiyan de digerin, lê pêşî ji Kurdan destpêkirin."

**Hêvîdar Ehmed**
*Hewlêr*



# Kongreya Neteweyî meha pêş tê lidarxistin

Ji bo cara yekê aliyên siyasî yên çar parçeyên Kurdistanê gihiştin wê baweriyê ku kongreya neteweyî ya kurdî li Hewlêrê bê sazkirin. Mesûd Barzanî jî bi rêya şandina nameyekê ji bo hemû aliyên siyasî yên Kurdistanê dibêje: "Bi navê Mam Celal û Abdullah Ocalan dozê li we dikim ku ji bo kongreya neteweyî bicivin."

Demeke dirêj e ku behsa sazkirina kongreyeke neteweyî tê kirin, ku li ser asta çar parçeyên Kurdistanê birêve here, lê ji ber çend hokarên navxweyî û derveyî kongre nehat sazkirin. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî nameyek ji bo hemû aliyên siyasî yên çar parçên Kurdistanê şand, bi mebesta pêkanîna komîteya amadekar ya kongreya neteweyî ya kurdî, ku li gor zanyariyên Rûdawê wê meha bê li Hewlêrê bê sazkirin.

Ev doza Barzanî li hundir û derve bi erênî hat pêşwazîkirin. Hersê aliyên opozisyonê li Herêma Kurdistanê jî (Goran, Komel û Yekgirtû) kongreyê wek gaveke erênî bi nav dikin û dibêjin li ser asta bilind tê de beşdar dibin.

Civîna amadekariya Kongreya Neteweyî ya Kurdî duşema borî (22.07.2013) bi beşdariya nûnerên 45 partî û hêzên siyasî yên çar beşên Kurdistanê li havîngeha Selahedîn a Hewlêrê hat sazkirin. Di civînê de lijneyek ji 21 kesan hat avakirin û ew lijne wê hemû amadekariyên kongreyê bi cih bîne.

Serokê civata serkirdayetiya Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê, Mihemed Reûf, derbarê daxwaza Barzanî de ji Rûdawê re got: "Me nameya Barzanî bi erênî wergirt û li polîtburoyê gotûbêj li ser hat kirin û şanda Yekgirtû jî hat diyarkirin." Mihemed Reûf dibêje ne merc e ku ew bi çavê opozisyonê li her tiştî binêrin: "Me ev mijar bi rewşa navxweyî ya Herêma Kurdistanê û pirsa dijberiyê girênedaye, ji ber ku Yekgirtû di kongreya xwe de behsa dewleta kurdî kir."

## Hevdîtina Mesûd Barzanî û Murad Karayilan

Guherînên deverê bandor li ser doza kurd li çar parçên Kurdistanê jî kirine, nemaze Rojava û Bakurê Kurdistanê. Li gor pirraniya partiyan, dema girêdana wê kongreya neteweyî hatiye, ku ev demeke dirêj e behsa wê tê kirin. Di Nîsana îsal de serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û serokê berê yê Konseya Rêvebir ya Koma Civakên Kurdistanê KCK, Murad Karayilan, hevdu dîtin û behsa girêdana kongreya neteweyî ya kurdî kirin. Diyar e hevdîtina wan herdu serokên Bakur û Başûr bibe hewldaneke jidil ji bo lezkirina gavên girêdana kongreya neteweyî ya kurdî.

Berê berpirsê pêwendiyên derve yên PKKê Ehmed Denîz nûçeya hevdîtina Barzanî û Karayilan ji Rûdawê re piştrast kiribû û gotibû: "Pirsa kongreya neteweyî di navbera Barzanî û Karayilan de hat behskirin. Me derbarê platform û konferansa neteweyî de nêrîna xwe gihand û me nêrîna wan jî wergirt."

Li gor YNKê jî, niha rewş baş e ji bo sazkirina kongreya neteweyî. Tew dewletên derdorê jî li ser wê kongreyê hatine agahdarkirin. Endamê polîtburoya YNKê Sadî Ehmed Pîre ji Rûdawê re ragihand ku kar ji bo sazkirina wê kongreyê tê kirin û niha rewşa deverê baş e, da ku Kurd ji her çar parçeyên Kurdistanê li ser çarenûsa xwe kom bibin û biryarê li ser siberoja doza kurd bidin: "Em ji bo sazkirina konferansa neteweyî ya kurdî ligel Tirkiyeyê û Îranê axivîne û ew jî razî bûne."

Komela Îslamî ya Kurdistanê jî amade ye ku beşdarî wê kongreyê bibe. Endamê polîtburoya Komela Îslamî ya Kurdistanê Tofiq Kerîm ji Rûdawê re behsa naveroka nameya Barzanî dike, ku ji bo aliyan şandiye. Nameya Barzanî behsa babeta bîrkirin û komkirina hemû aliyên siyasî yên Kurdistanî dike û dibêje: "Min ligel Mam Celal û Abdullah Ocalan behsa vê ramanê kiriye û bi kêfxweşî niha bi navê wan jî daxwaz dikim ku em kongreyekê saz bikin ji bo nirxandina doza kurd û yekîtiya Kurdan. Lewma dozê li hemû aliyan dikin ku di vê kongreyê de beşdar bin." Tofiq Kerîm dibêje herçiqasî ew aliyekî opozisyonê ne li Herêma Kurdistanê, lê "jixwe me soz nedaye her tiştê ku li Hewlêrê bê kirin, em li dijî wê derkevin."

## "Kar ji bo dirustkirina dewletê"

Hersê aliyên opozisyonê li ser meseleya beşdarbûna di wê kongreyê de û kombûna komîteya amadekar ji bo girêdana konferansê şêwira hevdu kirine. Endamê civata niştimanî ya Goran, Kardo Mihemed, piştrast kir ku aliyên opozisyonê li ser wê mijarê pêwendî ligel hevdu kirine: "Goran biryar daye bi awayekî bihêz tevî kongreyê bibe." Li gor gotina Kardo Mihemed, ku serokê fraksyona Goran e li parlementoya Kurdistanê, divê di wê kongreyê de "Kurd ji bo dirustkirina dewletê kar bikin."

Li gor serokê civata serkirdayetiya Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê jî, di wê kongreyê de behsa pirsa kurd di îro û siberojê de tê kirin û behsa rewşa navxweyî ya parçeyên din ên Kurdistanê tê kirin û divê "ezmûna Herêma Kurdistanê wek bingeh ji bo parçên din ên Kurdistanê bê girtin."

Partiyên Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê jî bi hêvî berê xwe didin sazkirina kongreyê. Ji ber ku li gor wan konferans dibe motîf ji bo çareserkirina beşekî zêde yê pirsgirêkan. Nûnerê BDPê li Hewlêrê, Mihemed Elî Ayden, derbarê girêdana kongreya neteweyî got: "Me doz li hemû partiyên Kurdistanî kiriye ku di sazkirina kongreyê de bilezînin. Ji bo serxistina wê, tiştê ji destê me bê emê bikin. Birêz Ocalan pirr bi coş e ji bo girêdana wê kongreyê û Barzanî jî jidil hewldanan jê re dike."

---

## Çi me kom dike?



**Hêmin Ebdulla**

Di dawiyê de Kurd gihiştin wê qonaxa ku kongreyeke neteweyî girêdin. Neteweyeke ku dîroka wî tijî ye bi çîrokên nakokî û hevkuştinê, ji bo yekem car lawên wê li dora maseyekê kom dibin û behsa siberoja xwe dikin. Dibe ku em nifşekî xweşbext bin ku vê qonaxê dibînin, lê ne merc e ku ew kongre encamekê wê ya wiha hebe, eger aliyên tê de beşdar ajendeyên xwe li ser bingeha nêzîkbûn û jihevfêmkirinê amade nekiribin.

Ew amadekariyên ku ji bo girêdana kongreyê hatin kirin, ne dilxweşker bûn, qasî ku diltezîn bûn. Sadetirîn armanca kongreyeke bi vî rengî bihevre kombûna lawên neteweyekê ye, da ku behsa siberojê bikin. Ne biryar e ew law cudahiyên xwe deynin aliyekî û hevdeng bin. Ne biryar e jî kes kesî din tine bike. Armanc zelal e û pêk tê ji hevtêgihiştinê. Lê belê em wan hemû salan ne amade bûn ku bên ji hevdu fêm bikin û demeke dirêj xwest heta me ew armanca sade qebûl kir.

Kongreya neteweyî ya Kurdistanê di çend heftiyên bê de di qonaxekê de tê girêdan ku Kurdan li sê parçeyên welatê xwe gavên wiha ber bi pêş ve avêtine ku vegera ji wan ber bi paş ve tine. Li Bakur qonaxekê destpêkiriye ji bo çûna ber bi çareseriyê ve ku zehmet e ti aliyek bikare berê wê berevajî bike. Rojava bi hemû kêmasiyên xwe ve ji wê yekê derketiye ku bîr li pişaftin û destjêşûştina wê bê kirin. Başûr jî kelecana dewletbûnê ew wiha mest kiriye ku hinek caran ji bîr dike ku hêj ala wê li ser banê NY naheje. Lê asoya Rojhilatê Kurdistanê hêj ne ronî ye.

Ji ber ku asoya beşek ji Kurdistanê ne ronî ye û beşên din jî ji bo pêşketinên zêdetir pêdiviya wan bi piştevaniya hevdu heye, girêdana kongreyeke neteweyî ya kurdistanî bûye pêwistî. Lê giring e bê zanîn ku di wê kongreyê de behsa çi tê kirin. Aliyên beşdar li ser çi li hev dikin û her aliyek dixwaze kîjan benda ajendeya xwe bixe karname yan projeya stratejîk ya kongreyê. Ji vê jî giringtir: Gelo ew aliyên beşdar dizanin çima beşdar dibin?

Temaşekirina li wê kongreyê bi berçavkên partîzanî karekî pirr çewt e û tê wateya xerabkirina armanca wê. Lewma jî eger partiyên Kurdistanê bi niyet bin bi vê bingehê beşdarî kongreyê bibin, ji niha ve wê têk herin. Rasttir wiha ye ku axaftin li ser wê yekê bê kirin ku xisleta bihevre girêdana parçeyên Kurdistanê û şêwaza reftara wan, ku kok be ligel yasayên navneteweyî, ligel hevdu çawa be. Bila nêrînên cihê hebin, lê nabe ajendeyên partîzanî bên ferzkirin.

Rast e, di wê kongreyê de behsa niha û rabirduyê jî tê kirin, lê karê mezin ji bo sibe ye. Da ku tu serkeftî bî, pêwist e ji bo sibe nêrînên me yên rastbîn û ronî hebin. Rasttirîn nêrîn jî ew e ku em fêm bikin ku ne dema wê hatiye û ne jî em dikarin dewleta Kurdistana Mezin dirust bikin. Ango bila em lêbikolin ka çawa em dikarin formûleyên yasayî bibînin ji bo bihevre girêdana beşên Kurdistanê, bêyî ku em dewletên dagîrkerên Kurdistanê li ser dijayetîkirina xwe hevdeng bikin.

**Rasttirîn nêrîn jî ew e ku em fêm bikin ku ne dema wê hatiye û ne jî em dikarin dewleta Kurdistana Mezin dirust bikin.**

Beriya salekê min di gotareke xwe de pêşniyar kir ku em sûdê ji modela YE werbigirin: Sînor bên sistkirin û hevkariya aborî û çandî di navbera beşên Kurdistanê de bê zêdekirin. Welatên endamên YE dewletên serbixwe ne û amade bûn ku dest ji beşekî serweriyên xwe berdin. Beşên Kurdistanê ne dewletên serbixwe ne, lê dikarin vêga û di vê qonaxê de, di çarçoveya dewletên ku li wan hatine belavkirin, hewldana bidestanîna wan mafan bidin ku niha li Herêma Kurdistanê hene. Parçeyên Kurdistanê dikarin yekîtiyeke aborî û çandî pêk bînin ku ji dirustkirina dewletê cihê be. Ew yekîtî dibe xêr li ser şêniyên din ên dewletên dagîrkerên Kurdistanê jî. Lewma jî dijayetiya wê nakin, lê wê piştevaniyê li yekîtiyeke wiha bikin.

Her çiqasî giring e heramkirina şerê birakujiyê di wê kongreyê de bê teqezkirin, lê nabe kongre xwe pirr mijûl bike bi behskirina nakokiyan û rabirduyê. Giring e behsa siberoja hevbeş bê kirin, ew siberoj jî bi berçavkirina berjewendî û xewnên hevbeş dirust dibe.

## 1200 komên cuda opozisyona sûrî pêktînin

Berpirsê bilind yê îstixbarata amerîkî Defense Intelligence Agency, David Shedd, derbarê pevçûn û şerê navxweyî li Sûriyê de ji rojnameya New York Times re axivî û diyar kir ku herî kêm 1200 komên cuda di nav opozisyona sûrî de hene û gellek ji wan tenê li gor berjewendiyên xwe yên şexsî tevdigerin. Li gor baweriya David Shedd, şer û peçûnên nevxweyî wê bi salan bidomin keta ku hêzeke serdest xwe li ser yên din ferz bike, eger Esad bikeve jî.



# Li hotêlên Hewlêrê trafîka Rojava

**Dilxwaz Behlewî**
*Hewlêr*

Berpirsên pirraniya partiyên Rojavayê Kurdistanê li hotêlên Hewlêrê di danûstandinan de ne. Hinek ji wan di vê navê de danûstandinê dikin ku hejmara partiyên Rojavayê Kurdistanê kêm bikin. Hinek jî danûstandinê li ser pêşeroja Rojavayê Kurdistanê dikin, bi taybetî piştî pêşniyaza PYDê ji bo damezrandina hikûmeteke demkî.

Nêzîkî heşt mehan e ku herçar partiyên Rojavayê Kurdistanê, yên ku di bin nave Yekîtiya Siyasî de hevgirtinek pêkanîn, dixwazin bibin yek. Lê hêj her di warê rawêj û danûstandinê de ne. Di vê navberê de yek ji wan 4 partiyan ji yekîtiyê vekişiyaye. Ev 4 partî ev in: PDKSP, ku sala 1957ê hate damezirandin û Ebdulhekîm Beşar serokatiya wê dike. Partiya Yekîtî ya Kurdî li Sûriyê PYKS, ku Ibrahîm Biro serokatiya wê dike. Herwiha herdu Partiyên Azadî PAKS, ku bi serokatiya Mistefa Osê û Mistefa Cuma ne. Van çar aliyan roja 30.11.2012ê li Hewlêrê yekîtiyek bi navê Yekîtiya Siyasî ya Demokrasî ya Kurd li Sûriyê ragihandibûn.

### Kurd vekişiyane û Kurdistanê cih girtiye

Tevî ku berpirsên van çar partiyan bi wê niyazê bûn ku ev yekîtiya wan di pêşrojê de bibe partiyek, lê dibe ku ev yekîtî ber bi hilweşandinê ve diçe. Bi taybetî piştî ku PYKS bi serokatiya Ibrahîm Biro ji vê yekîtiyê vekişiya.

Piştî vekişandina vê partiyê, hersê partiyên din dîsa hewlên xwe ji bo avakirina yek partiyê berdewam dikin. Endamê polîtburoya PAKSê Beşar Emîn ji Rûdawê re got: "Yekîtiya Siyasî ji qonaxa danûstandinê derbas bû bo qonaxa dariştina yakhalîbûnê. Civînên Hewlêrê ji bo gihiştina merheleya ragihandina partiyeke siyasî ya hevgirtî ne." Beşar Emîn eşkere kir ku piştî xwepaşvekişandina PYKSê ji vê Yekîtiya Siyasî, partiyeke din şûna wê girtiye, ew jî Partiya Yekîtiya Kurdistanî ye. Navborî damezrandina vê yekîtiyê girîng dibîne: "Bi ber rewşa Rojavayê Kurdistanê, pêwîstî bi yekîtiyekê dibe."

> **Ev demeke ku şanda PYDê li hotêla Xanzad a Hewlêrê ligel PDKSPê dicive. Mercê PDKSPê dabeşkirina desthilatê bi awayê 50 bi 50 ye, lê PYD razî nabe.**

### Di van nêzîkan de ev yekîtî tê ragihandin

Berdevkê PDKSPê Nûrî Brîmo jî dibêje ku vê Yekîtiya Siyasî qonaxa zor derbas kiriye: "Yekîtiya Siyasî wek projeyeke siyasî ji bo yekîtiyê, mafê van 4 partiyên kurdî bû. Me jî her biryara yekbûnê da, bi nêrîna yekkirin û birêxistina mala kurdî ji bo bidestanîna mafên rewa yên gelê kurd. Encamên vê projeyê di van nêzîkan de derdikevin." Derbarê xwevekişandina PYKSê ji vê Yekîtiya Siyasî, Nûrî Brîmo got: "Ev partî azad e çi biryarê dide."

Ev herçar partî endamên ENKSê ne, ku 16 aliyên siyasî li xwe digire, lewma hinek ji partiyên di nava vê encûmenê de bawer dikin ku ev yekîtî destpêkeke ji bo hilweşandina ENKSê. Sekretêrê Partiya Wekhevî ya Kurdî, Nimet Dawid, ji Rûdawê re got: "Her ji roja ragihandina Yekîtiya Siyasî ve me wek partiyekê têbîniya xwe li ser vê gavê nîşan da. Ji ber roja ku ENKS hate ragihandin, me hemû awayên din ên hevpeymaniyê red kirin, li ser vê me li hev kir ku ENKS hevpeymana siyasî be di navbera hemû partiyên kurdî de."

### Dixwazin encûmenê aktîv bikin

Ji bilî hewldanên van herçar partiyan ji bo yekîtiyê, ev demeke ku heft partiyên din jî li Hewlêrê bi danûstandinên ji bo aktîvkirina ENKSê ve mijûl in, ku ev demeke dengê wê nîne û çarenivîsa wê ne diyar e. Ev jî ji bo pêkanîna balansê li Rojavayê Kurdistanê, ku PYD lê serdest e.

Nûnerê Tevgera Çaksazî ya Kurd li Sûriyê, Cedan Elî, ji Rûdawê re ragihand ku "pirraniya partiyên Rojavayê Kurdistanê li Hewlêr ne. Divê di qonaxa niha de hemû partiyên kurdî yên Rojavayê Kurdistanê li hev bikin." Derbarê encamên civînên wan de, navborî got: "Partiyên Yekîtiya Siyasî hewl didin ku hinek partiyên din bînin nav rêza xwe. Partiya Niştimanî ya Demokrat, Partiya Wekhevî, Partiyên Yekîtiya Siyasî û em hewl didin ku ENKSê aktîv bikin, da ku em PYDê neçar bikin pêbendiyê bi Peymana Hewlêrê bike."

### PDKSP doza 50 bi 50 dike

Roja 12.07.2012ê di navbera ENKSê û EGRKê de Desteya Bilind ya Kurdî (DBK) hat ragihandin. Lê çarenivîsa vê desteyê jî ne diyar e. PYD jî alternatîvek ji vê desteyê re dîtiye, ew jî hikûmeteke demkî ye. Lê opozisyona Sûriyê beriya ragihandina hikûmeteke wiha nerazîbûna xwe diyar kir û wê wek hewlekê ji bo perçekirina Sûriyê dibînin.

Li gor gotegotên ji derdorên civînan, dibe ku çend partiyên kurdî jî ligel PYDê beşdarî pêkanîna vê hikûmeta demkî bikin. Jêdereke nêzîk ji civînên di navbera PDKSPê û PYDê de ji Rûdawê re ragihand: "Ev demeke ku şanda PYDê li hotêla Xanzad a Hewlêrê ligel PDKSPê dicive. Mercê PDKSPê dabeşkirina desthilatê bi awayê 50 bi 50 ye, lê PYD razî nabe."



Hotêla Xanzad li Hewlêrê



# Dadgehê pêlava wî weke “çek” hesiband



Zinar Ala *Madrîd*

Xortê ji Rojavayê Kurdistanê Hokman Cuma (Kobanî - 1983), ku ev bûn heşt sal li Spanyayê dijî, 3 yê ji ber avêtina pêlavekê li dijî serokwezîrê Tirkiyeyê Receb Tayyib Erdogan di zindanê de, dîsa bala medyaya spanî kişand ser xwe. Dadgeha Ceza ya Sevillayê, heman dadgeha ku berê Hokman bi sê sal zindan cezakiribû, biryar da ku pêlavî wî xera bike.

Hokman Cumayê 31 salî di êvara 22yê Sibata 2010ê de li benda dîtina serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan bû, yê ku ji bo wergertina xelatekê serdana paytexta herêma xweser ya Andalusyayê Sevilla kiribû. Piştî rêûresma wergirtina xelatê di avahiya şaredariya Sevilla de, Hokman li derve xwe amadekiribû ji bo ku nerazîbûna xwe li dijî xelatkirina Erdogan nîşan bide. Hokman pêlava xwe avêtibû Erdogan û bi dengekî bilind gotibû “kûjer” û “bijî Kurd û Kurdistan”, lê pêlava wî di ser serê Erdogan firiyabû û li rûyê zêrevanekî wî ketibû.

### Dadgeh pêlavê wek “sîleh” dibîne

Ji bo ku wê pêlavê bi dest bixe, Hokman daxwaznameyek ji dadgehê re şand lê dadgehê daxwaza wî red kir û di bersivê de ji Hokman re pêlav weke “sîleha cerîmetê” binavkiribû. Dadgehê di 27ê Pûşbera borî de biryara xerakirina pêlava Hokman Cuma da. Hokman tenê dixwest ku ew pêlav weke bîranînekê li ba xwe bihêle û digel ku ew dikare li dijî biryara dadgehê îtîrazê bike jî, lê êdî bêhêvî bûye. Di vê bareyê de Hokman ji malpera Andaluces Diario re wiha axivî: “Êdî naxwazim mijarê zêde bilivînim, naxwazim gellekî aciziyan bikim. Pirsgirêkan naxwazim, êdî ez çi dikarim bêhtir bikim?” Parêzerê wî Luis Ocaña jî li hemberî biryara dadgehê matmayîna xwe nîşad da û got “nayê bawerkirin ku dadger pêlavê weke sîleh bibîne, tiştekî ku nayê fêmkirin e.”

# “Min demek xweş bi Kurdên Almanyayê re derbas kir“

Sebîh Hoser

Masanori Kashiwazaki, ango bi kurtî Kashi, xwendekarekî japonî ye. Ew di Nîsana 2012ê de wekî xwendekarekî mêvan ji bo salekê tê bajarê Almanya Marburgê. Dema Kashi afîşeka şeva danasînê ya şaxa bajêr a Yekîtiya Xwendekarên Kurdistanê (YXK) dibîne, ew jî biryar dide tevlî bibe. Kashi li vir bi dilgermî tê pêşwazî kirin û biryar dide ku cihê xwe di nava koma xwendekarên kurd de bigire.

Kashî di sala 2009ê de xwenîşandan li dijî siyaseta biyaniyan a Japonê saz dike û li vir ji bo cara pêşîn rastî Kurdan tê. Kashi di vê bareyê de dibêje: “Nêzîkî 500 Kurdên, ku gellek ji wan ji gundên derdora Dîlokê ne, li Japonê dijîn. Kurd li bajarê Warabi dimînin, ji ber vê yekê bajar ji aliyê hevalên Kurdan ve wekî “Warabistan“ tê binavkirin. Di van salên dawî de hejmara Kurdên nû ku tên Japonê jî zêde bûye. Lê pirraniya wan wekî penaber nehatine naskirin“.

Ji ber nêzîkatiya xwe ya bi Kurdan re, xwendekarên kurd jî bala wî dikişînin. Kashi li ser YXKê wiha dibêje: “Tişta herî baş ew bu ku YXK ne tenê rêxistineke netewî, lê herwiha yeka sosyalîst û pêşverû jî ye û xwendekarên kurd ji bo gellek nêrînên cuda vekirî bûn.“ Navborî wiha berdewam dike: “Min bi çavên xwe dît ku Kurd xwe li Almanyayê bi çi awayê berfireh bi rêxistin dikin. Xebata Kurdên Japonê ne weke ya yên Almanyayê birêxistinkirî ye û pirr lawaz e. Ew tenê car bi car xwenîşandanan li dijî siyaseta Tirkiyeyê lidardixin û Newrozê pîroz dikin.“



Kashî xebata xwe ya di nav YXKê de wiha tîne zimên: “Ji min re pêkan bû ez bi awayekî çalak tevlî xebata YXKê bibim. Wek mînak min di civîneke derbarê Kurdên diyasporayê de gotarek li ser Kurdên Japonê pêşkêş kir û di nava wan de kongreya salane jî, ez beşdarî gellek çalakiyên YXKê û rêxistinên din ên Kurdên Almanyayê bûm. Min herwiha karî nivîsekê li ser xebata xwe ya bi xwendekarên kurd re di kovara YXKê “Ronahî“ de jî binivîsim. Min demek gellekî xweş bi Kurdên Almanyayê re derbas kir. Mixabin ew dem zû borî“.

### Daxwaziyek ji Japonê

Kashi piştî vegera xwe ya Japonê serboriyên xwe yên di nava Kurdên Almanyayê de bi Kurdên Japonê re parve dike. Ciwanên kurd ên Japonê jî dibêjin ew ji nû ve hewl didin xwe bi rêxistin bikin û ji bo yekem çalakiya xwe dixwazin dersa kurdî bidin destpêkirin. Kashi li ser vê yekê dîsa têkiliyan bi hevalên xwe yên li Almanyayê re datîne û daxwaziya çend pirtûkên hînbûnê ji wan dike. Xwendekarên Marburgê jî daxwaziya wî bi cih tînin û di nava wan de pirtûka “Hînker“ û ya “Kurdî-Kurmancî“ ya mamoste Evdile Dirêj, hinek pirtûkan ji Kurdên Japonê re dişînin. Kashi dibêje ku ew her demê amade ye ku alîkariyê bide ciwanên kurd, lê ew naxwaze bibe endamekî çalak yê komeleya wan ya nû, ji ber ku hewldanên ciwanên kurd ên berê ji ber zêdebûna kesên japonî têk diçûn. Lê ewê xebata xwe di nava siyaseta biyaniyan de bidomîne û bi vî awayî bi Kurdan re jî di nava têkiliyan de bimîne.

# Zanîngeha Dusseldorfê dest bi dersa kurdî dike






**Agit Boztemur**
***Dusseldorf***

Li zanîngeha bajarê Dusseldorfa Almanyayê wê êdî dersa kurdî bi fermî were dayin. Rektorê zanîngehê Professor. Dr. Hans Michael Piper diyar kir ku ewê ji semestera zivistanê û pê ve dersa zimanê kurdî bidin xwendekarên xwe. Naveroka dersê wê ji fêrkirina axaftin û nivîsandina kurdî pêk were. Heta niha li heman zanîngehê xwendekarên kurd bi xwe kursên zimanê kurdî yên ne fermî organîze dikirin.

Zanîngeha ku di qada navnetewî de jî navdar e, wê bi vî awayî derfetê bide xwendekarên ku dixwazin fêrî kurdî bibin û di siberojê de ligel Kurdan bixebitin. Pêşveçûna aborî ya li Başûrê Kurdistanê hem bala şirketên ewropî dikişîne û hem jî ya xwendekarên beşên aboriyê.

Bi fêrbûna zimanê kurdî wê bi taybetî xwendekarên beşa aboriyê bikaribin baştir têkiliyên bazirganî di siberojê de bi Kurdistanê re daynin. Herwiha ji ber rewşa Kurdan ya siyasî û pêşveçûnên li Rojhilata Navîn jî gellek xwendekarên biyanî û bi taybetî yên alman dixwazin zimanê kurdî fêr bibin. Ji hêla din ve, ji ber pişaftina ku Kurd pê re rû bi rû mane, hejmareke bilind ya xwendekarên kurd yên li zanîngehên Ewropayê dixwînin bi zimanê kurdî nizanin. Ew jî eleqeyek mezin nîşanî kursên kurdî didin.

Çav li rê ye ku dersa zimanê kurdî ya li zanîngeha Dusseldorfê ji aliyê Yilmaz Erşahîn-Holz ve were dayin. Yilmaz Erşahîn di nava civaka kurd de wekî Yilmazê Seydo tê nasîn. Ew herwiha vokalîstê Koma Mizgîn bû. Ev çend sal in ku Erşahîn li zanîngeha Dusseldorfê dersên zimanê tirkî jî dide.

Derbarê kesên dikarin beşdarî dersê jî bibin hat diyarkirin ku kesên li zanîngehê qeyda wan heye û kesên mêvan dikarin ji semestera were û pê de beşdarî dersa zimanê kurdî bibin. Semestera zivistanê ji meha Cotmehê destpêdike. Dersa zimanê kurdî wê destpêkê semesterekî berdewam bike û her heftiyê 90 deqîqe be. Di dawiya dersa yeksemesterî de wê ezmûnek were nivîsandin. Eger xwendekarên Bachelor û Master bi serkeftî vê ezmûnê derbas bikin, wê bikaribin du puanên krediya xwendekariyê bidestbixin. Li gor hejmara beşdarên dersê wê biryar bê dayin ka ders wê di semesterên pêş de berdewam were dayin an jî bê rawestandin

Bajarê Dusseldorfê paytexta herêma Nordrhein Westfalen e. Li zanîngeha Heinrich-Heine ya bajêr 20.500 xwendekar dixwînin.

# Doza kuştina Kurdê penaber dewam dike

**Koln (Rûdaw) -** Rûniştinên doza kuştina Kurdê bi navê Omer Demirel ku di Adara îsal de ji hêla penaberekî cezayîrî ve bi kêrê hatibû kuştin berdewam dike. Bersûcê cezayîrî got ku wî tenê xwestiye bi kêrê qurbaniyê kurd bitirsîne. Di rûniştina li bajarê Stuttgartê ya li dadgeha ciwanan a eyaleta Baden Wurttenbergê ya Almanyayê de, bersûc herwiha îdia kir ku Kurdên pê re li girtîgeha Stammheimê bûn li wî xistine û ji ber vê sedemê ew ji wê girtîgehê birine girtîgeha Hohenasperg.

**Bersûcê ku niha girtî ye, ji dadgehê re diyar kir ku ew bi xwe qurbanî ye.**

Derbarê pevçûna ku di 14ê Adara îsal de li wargeha penaberan ya Kirchheima li ser bajarê Stuttgartê pêk hatibû, bersûcê ku niha girtî, ye ji dadgehê re diyar kir ku ew bi xwe qurbanî ye û ne bi armanca kuştina Kurdê penaber, lê ji bo ku xwe biparêze wî ew kuştiye. Derbarê van îdiayên bersûc de dadwer jî diyar kir ku ew ji van gotinên wî zêde bawer nake. Li gor rapora bijîşkî, birînên kêrê yê qurbaniyê kurd Omer Demirel ewqasî kûr bûn ku ne pêkan e ew birîn di dema bezîna li ser bersûc lê bûbin. Li gor raporê birîneke yê qurbanî 18 cm kûr bû.


Bersûcê cezayîrî di odeya Omer Demirel de hatibû bicihkirin.

Omer Demirelê 22 salî ji navçeya Besnî ya ser bi Semsûrê bû. Piştî bûyerê şahidan diyar kiribûn ku ji ber odeyekê pirsgirêk di navbera sê penaberên ereb ên ji Cezayîr, Libya û Marokko û du Kurdên niştecihê wargehê de derket. Yek jê Omer Demirel bû û yê din jî Kurdê ji Rihayê yê bi navê Kadir bû. Bersûcê cezayîrî di odeya Omer Demirel de hatibû bicihkirin û piştre pirsgirêk di navbera wan de derketibû. Li ser vê yekê Demirel ji birêveberiya wargehê û polîs re diyar kiribû ku ew ji aliyê yê Cezayîrî ve hatiye tehdîtkirin. Roja 14ê Adarê jî gengeşî di navbera bersûcê cezayîrî û Kurdê bi navê Kadir derdikeve. Bi geşbûna şer re Omer Demirel jî aliyê hevalê xwe yê kurd digire û di encamê de yê cezayîrî bi kêrê êrişî wî dike.

Rûniştina dozê wê li dadgeha ciwanan ya bajarê Stuttgartê di roja 31ê Tîrmehê berdewam bike.




## Rêvebirê DALKURDê Ramazan Kizil:

# Em dikarin beşdarî kupayên Ewropayê bibin



Serokê tîma futbolê ya Kurdên Swêdê DALKURDê, Ramazan Kizil, ji Rûdawê re ragihand: "Bi 10-20 hezar endam ku salane 50 Euro bidin em dikarin tîmeke ku beşdarî kupayên Ewropayê bibe biafirînin."

DALKURD îsal bi awayekî gellekî serkeftî dest bi lîgê kir û 9 maçên xwe yên ewilî bi heşt serkeftin û bi yek berambertiyê bi dawî anî. Lê di şeş maçên xwe yên dawî de sê têkçûn û sê beramberî bi dest xistin û di şeş maçan de tenê sê pûan wergirtin. Di dawiya periyoda yekem de DALKURD bi 28 pûanan bû sêyemin: Kizil: "Ji ber derfetên kêm, esas îsal armanca me ne şampiyontî bû, berevajî, xwe ji deynan şuştin bû. Butçeya me 2 milyon Euro ye, ya reqîbên me 20 milyon e. Ji bo ku tîmek karibe bi awayekî serkeftî têbikoşe, divê xwedî 24 futbolîstên ku kêm zêde di yek sewiyê de bin. Gava yek seqet bû, an ji seheyê derket, yedêkê wî karibe cihê wî dabigire. Lê em tenê xwedî 13 futbolîstan in, yên mayî ne di mistewaya wan de ne."

Kizil di berdewamiya axaftina xwe de hêviyên xwe wiha bi lêv kirin: "Eger seqetên me vegerin, emê dîsa wek destpêkê bileyizin û pûanan bidin hev. Diyar e ku îsal IK Sirius wê bibe şampiyon û emê jî ji bo play-off têbikoşin û biserkevin. Ji ber ku li gorî Fîksturê em bi awantaj in. Me maçên xwe yên zor li dû xwe hiştin, maçên hêsan li pêşiya me ne. Rewşa reqîbê me Nykopings BIS berevajî ye. Wan maçên rehet li dû xwe hiştin, niha maçên dijwar li pêşiya wan in."

Kizil di dawiya axaftina xwe de ragihand ku wan bi derfetên gellekî kêm DALKURD gihandine heta vê astê, lê ji bo armanc û hedefên bilindtir divê bêtir tişt bi dest bixin û got : "Ji bo em karibin heta Super Lîga Swêdê herin û beşdarî kûpayên Ewropayê bibin, divê em ji 10 hezar heta 20 hezar endaman peyde bikin. Mehaneya endametiya salane 50 Euro ye."







## Bayer Leverkusen dixwaze Aryan transfer bike

Aryan di sala 2002an de ji dayik bûye: Ewê di sala pêşiya me de biçe Gymnasium sinifa 6a. Di 5 saliya xwe de dest bi leystika fûtbolê kir. Vê salê ji klûba Preussen Elberg ku 5 sale dileyize, transferî ESG Essen bû. Aryanê ku di mewkiya santrafor de dileyize di her 5 salên xwe de bû Qralê Golan. Aryan bi lingê xwe yê çepê dileyize û bi taybetiyên xwe yên gelekî teknîk û bi lez tê naskirin. Aryanê ku ji aliyê hemû antrenorên xwe ve wek qebiliyeteke super tê bilêvkirin, îsal ji klûba alman ya Bundes Liga Bayer Leverkusen ji bo sala pêşiya me pêşniyariya trasferê stend. Lê malbata Aryan hîn biryara xwe nedaye û di vê mijarê de naxwazin bi lez biryarbidin.

Ew bi xwe dixwaze ku di salên pêşiya xwe de di Bayern Mûnih û Real Madrit de bileyize.

Ji fûtbolîstên cîhanê Aryan, bêtir kêfa xwe ji Messi yê Barcelona û Ronaldo yê Real Madridê bîne jî Ronaldo gavekê derdikeve pêş. Ew wek favorî ji lêzbûn, teknîk, lêdanên serbest ên Ronaldo û di pozîsyonên yek bi yek de qebîliyeta wî ya derbaskirina dijberên (reqîb) xwe hez dike.

Aryan kurê Gulê Dagdelen û siyasetmedarê naskirî Murat Dagdelen e. Xwîşka wî ya mezin Rojîn 23 salî ye û li Almanya mihendîsê makînê ye. Xwîşka biçûk Kejê 13 salî ye û wek birayê xwe di Gymnasium de dixwîne.

Gava me ji bav Murat Dagdelen re got ku em dixwazin Aryan binivîsînin ji Rûdaw re weha got, 'Wî bê jibîrkirina xwediyê nasnameyeke netewî ye ango Kurd e, binivîse. Daxwaza min ew e ku lawê min rojekê bibe fûtbolîstekî gelekî baş û naskirî. Û hemû Kurd ji ber ku xwediyê yekî weha ne pê serbilind bin. Ji ber ku pêwîstiya Kurdan ji nivşekî nû yê ku karibin pê serbilindbin heye."





## Stranbêja îsraîlî Hedasa Yeşurun:

# Dema bi kurdî stranan dibêjim hêstiran di çavên wan de dibînim

- “Ji bo parastina ziman û muzîka kurdî li Îsraîlê bi kurdî stranan dibêjim.”
- “Vêga dora 120 hezar Kurd li Îsraîlê hene.”

Stranbêja îsraîlî ya bi esil ji Rojhilatê Kurdistanê, Hedasa Yeşurun, ku li bajarê Xolon li Îsraîlê dijî û bi aramî û kurdî stranan dibêje, di yekem hevpeyvîna xwe ligel Rûdawê de behsa ahengên Newrozê li Îsraîlê dike û dibêje sedema ku ew stranan bi kurdî dibêje ew e ku ziman û muzîka kurdî li Îsraîlê biparêze. Hedasa Yeşurun herwiha pirr dixwaze ku serdana Kurdistanê jî bike: “Da ku vegerim ser reh û kokên muzîka xwe.”

**Rûdaw: Tê gotin tu bi nêt î ku piştî meha Remezanê serdana Kurdistanê bikî û konsertan li wir saz bikî?**

Hedasa: Gellek kesan doz li min kirin ku serdana Kurdistanê bikim û konsertan saz bikim. Gellek kes dipirsin kengî serdana Kurdistanê dikim. Ez pirr kêfxweş im bi vê yekê û pirr dixwazim serdana Kurdistanê bikim. Lê divê daxwazname ji aliyê hikûmetê yan saziyekê ve bê pêşkêşkirin. Lewma serdana min girêdayî wî kesî ye ku daxwaznameyê ji min re bişîne. Xewna min e ku serdana Kurdistanê bikim.

Ji bo karê hunerî min serdana gellek deveran kiriye, wek Viyana, Almanya û Tirkiyeyê. Lê mixabin heta niha min serdana Kurdistanê nekiriye. Ji bo cara yekê li Almanyayê konsertek hat sazkirin, da ku tê de beşdar bibim, lê wiha rast hat ku dema wê ket roja şemiyê, ez jî pêbend im bi ola xwe. Lewma beşdar nebûm.

**Îsraîliyên bi esil ji Kurdistanê, pêwendiyên wan ligel Kurdên parçeyên Kurdistanê çawa ne?**

Ew Kurdên ku li Îsraîlê ne, pêwendiyên wan ligel Kurdên seranserê cihanê hene, nemaze Kurdên Iraq û Ewropayê.

**Tu hest bi çi dikî gava tu bi kurdî stranan dibêjî?**

Stran û helbest giringtirîn beşên çandê ne ku stranbêjan bi şêwazên cûrbicûr pêşkêş kirine. Min di stranên xwe de ronahî avêtiye ser çanda aramî û kurdî û şeydaya van çandan im. Lê bi zimanên erebî, farisî, tirkî û îbrî jî stranan dibêjim. Ez wek erkekî xwe dibînim ku vê kultûrê biparêzim, da ku neyê jibîrkirin. Gava ez bi kurdî yan aramî stranan dibêjim, pirr dilxweş dibim, ji ber ku dizanim bi rêya stranên xwe Kurdan kêfxweş dikim. Dema bi kurdî stranan dibêjim, hêstiran di çavên wan de dibînim. Piştî salên dijwar, niha dibînim ew dilxweş in.



**Tu dikarî bi kurdî biaxivî?**

Na.

**Êdî tu çawa bi kurdî stranan dibêjî?**

Ez nikarim bi kurdî bipeyvim, lê gava straneke kurdî dibêjim, pêşî wateya gotinên wê bi tevahî fêm dikim, da ku zanibim stran li ser çi ye.

**Agahiyên te li ser Kurdistanê hene?**

Dizanim Kurd neteweyeke bê welat in û heta niha serxwebûna xwe wernegirtine. Herwiha dizanim ku Kurdan di serdema Saddam de zehmetiyeke mezin kişandin.

**Tu li stranên kîjan hunermendên kurd guhdar dikî? Pêwendiyên te ligel hunermendên kurd hene?**

Hunermendên jêhatî yên Kurdan pirr in. Niha mijûl im ku stranên Hesen Zîrek û Tahir Tofîq û Zekeriya ezber dikim. Pêwendiyên min ên rasterast ligel stranbêjên kurd nînin, lê guhdariya stranên wan dikim. Lê pêwendiyeke min a baş ligel hunermend Murad Kawa heye. Ji dengê Çopî pirr hez dikim û bi stîla wê pirraniya stranên xwe dibêjim. Strana wê ya herî xweş jî li ba min “Siya çemane“ ye.

**Çi hevbeşiyeke kultûrî di navbera Kurdan û Îsraîliyan de heye, ku wiha li hunermendeke cihû bike ku bi kurdî stranan bêje?**

Gellek tiştên hevbeş di navbera Kurdistan û Îsraîlê de hene. Li Îsraîlê hejmareke zêde ya Kurdan heye û berê jî hejmareke zêde ya Cihûyan li Kurdistanê hebû. Bav û dayika min jî li Kurdistanê bûn. Ez bi zimanên din jî stranan dibêjim, lê gava bi kurdî dibêjim sedema wê ew e ku dixwazim ziman û muzîka kurdî li Îsraîlê biparêzim. Tevî ku ti mamosteyek nîne ku min fêrî kurdî bike, lê berdewam im li ser fêrbûna stranên kurdî.

**Hejmara kesên ku xwe wek Kurd dibînin û li Îsraîlê dijîn çend e û bi giştî rewşa wan çawa ye?**

Vêga dora 120 hezar Kurd li Îsraîlê hene. Em li Îsraîlê ahenga Newrozê digerînin û di wê rojê de derdikevin seyranê. Herwiha em dersên fêrbûna şahiya kurdî dixwînin. Em bi hev re ahengan digerînin. Xwarinên kurdî amade dikin. Heta niha me amûrên muzîkê yên kurdî wek dahol û zirnê parastine. Lê hemû Kurdên vir bi zimanê kurdî nizanin, nemaze nifşê nû, lewma bi zimanê îbrî dipeyvin.

*Hevpeyvîn:* ***Arî Resûl***



## Endamê DBKê, Aldar Xelîl:

# *Bûyera Amûdê:* Doza lêborînê dikim!

Endamê Desteya Bilind ya Kurdî (DBK) li Rojavayê Kurdistanê, Aldar Xelîl, ku niha bi serdanekê li bajarê Hewlêrê ye, di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de behsa rewşa niha ya Rojavayê Kurdistanê û ramana ragihandina îdareyeke serbixwe li wir kir.

- Îdareya hevbeş pêwistiyeke vê qonaxê ye.
- Ji bilî Kurdên ji Herêma Kurdistanê, hejmarek Kurdên Rojava jî di nav Cebhet el-Nusre de hene.
- Partiya Azadî xwe firotiye hêzeke dijminê Kurdan.

**Rûdaw: Niha Rojavayê Kurdistanê ber bi kû ve diçe?**

**Aldar Xelîl:** Piştî derbasbûna 2 sal û 4 mehan di ser destpêkirina şoreşê re, Kurdan dikarîbûn bi nasnameyeke kurdî bibin beşekî giring yê opozisyona Sûriyê. Karîbûn rêveberiya xwe dirust bikin û bibin hejmareke karîger a opozisyonê. Digel cîbicînekirina van jî, Kurdan karîbû di 19ê Tîrmeha par de ji bo cara yekê di dîroka Kurdên Sûriyê de li bajarokê Kobanê rêveberiyê ji destê rejîma Baasê derxîne û ev şoreş li çend deverên din jî belav bû. Ligel van destkeftan, çend zehmetiyên mezin derketin holê. Di warê aborî de debara xelkê û di aliyê siyasî de jî Kurd rastî çend êrişan hatin. Di aliyê siyasî de hinekan nedixwestin Kurd bi nasnameya xwe beşek ji şoreşê bin, lê tenê dixwestin bi opozisyona Sûriyê ve girêdayî bin. Kurdan selimand ku pêkhateya civaka Sûriyê ya herî rêkxistî ne û dixwazin bi aştî navçeyên xwe rizgar bikin, bêyî ku rê li ber bombebarana firokeyên şer ên rejîmê veke. Di van rojên dawî de careke din çekdarên Cebhet el-Nusre planek li ser Rojava girêdan ji bo dirustkirina mîrnişîna îslamî li bakurê Sûriyê. Ew hewldana wan bi wê yekê ve girêdayî ye ku rê li ber Kurdan bigirin ku destkeftên zedetir bi dest ve bînin.

**Kî piştgiriya wê bereyê dike?**

Ew rêxistin bi destê rejîma Sûriyê di dema hatina Amerîka bo Iraqê de hat dirustkirin. Pêşî wan li jêr navê Cind El-Şam li Iraqê çend êrişên xwekujî û teqîn pêk anîn. Piştî destpêkirina şoreşa Sûriyê xwe kirin Cebhet el-Nusre. Ew li ser rêxistina El-Qaîde ne. Pirraniya endamên wê ne xelkê Sûriyê ne.

**Rast e ku çend çekdarên wan li ba we dîl in?**

Erê, zêdeyî 10 kesên wan dîl di destê YPGê de ne.

**Tê gotin ku hinek ciwanên ji Herêma Kurdistanê jî di nav rêzên wê bereyê de hene. Zanyariyên we hene?**

Li gor zanyariyên ku gihiştine destê me, ew nûçe rast e, nemaze dibêjin hinek Kurdên navçeya Silêmaniyê di nav wê bereyê de hene. Lê ew li jêr navê Kurdayetiyê neçûne nav wê bereyê, lê li jêr nave Îslamê çûne. Ji xeynî Kurdên Herêma Kurdistanê, çend Kurdên Rojava jî di nav wê bereyê de hene, hinek ji wan kesayetiyên navdar in li Rojavayê Kurdistanê. Ramana wê bereyê îslamî ye. Pêşî me dijayetiya wê rêxistinê nekir, plana me ya dijayetîkirina wê jî tine. Piştî şerê li Serê Kaniyê, gava civîna me ligel Artêşa Azad hebû, ew jî dihatin û beşdar dibûn. Di peymana Serê Kaniyê de, ya cara berê, soz dan ku ew jî pêbendî peymanê bin. Lê diyar e gava dîtin ku Kurd dikin rêveberiya xwe dirust bikin, ji sozên xwe poşman bûn û plana xwe guherandin.

**Şerê cara borî li Serê Kaniyê çend hefteyan domand, lê YPGê nikaribû tevahiya bajêr zeft bike. Vê carê di çend seetan de Serê Kaniyê hat kontrolkirin, sedem çi bû?**

Di şerê cara berê de, Cebhet el-Nusre ne tenê bû, çend hêzên curbicur di şer de beşdar bûn. Dûre plana cara berê pirr berfireh bû, xeyal dikirin ku di hundirê çend rojan de Serê Kaniyê ji destê YPGê derxînin. Şer dom kir. Gava doza rawestandina şer jî dihat kirin, YPG red nedikir. Di şerê vê carê de, wek diyar e, Artêşa Azad beşdar nabe û bereya navborî tenê ye. Plana wan a sereke jî ne ji bo Serê Kaniyê ye, lê ji bo Rimêlan e, pirraniya hêzên xwe li nêzîkî Rimêlan kom kirine. Ango Serê Kaniyê çiraya destpêkirina şer e, lê şerê giran û mezin li Rimêlan rûdide. Çend roj in li başûrê Rimêlan û Çil Axa şerekî giran heye. Ew hêza mezin ku berê li Serê Kaniyê bû, bo Rimêlan hat veguhastin. Her çiqasî şer bilez li Serê Kaniyê gihişt encamekê, lê hêj li başûrê Rimêlan, Çil Axa û Til Elo didome.

> **Ew rêxistin bi destê rejîma Sûriyê di dema hatina Amerîka bo Iraqê de hat dirustkirin.**

**Guherînek di helwesta Tirkiyeyê de tê dîtin. Di şerê borî de li Serê Kaniyê, Tirkiyeyê piştevaniya Artêşa Azad dikir û çeper û deverên YPGê bombebaran dikir, lê vê carê bêdeng duxuye?**

Cara berê hesabê Tirkiyeyê li ser wê yekê bû, ku eger piştgiriya Artêşa Azad bike, dikare di demeke kurt de ji YPGê xelas bibe. Dûre jî dikarin navçeyên Rojava bixin bin destê xwe. Lê piştî ku çend caran xwe ceribandin, dîtin ku ev dijwar e. Lewma Tirkiye li biryara xwe vegeriya. Vê carê bereya Nusre tenê şer dike, ku girêdayî El-Qaîde ye. Di rûniştina Erdogan û Obama de, Amerîka ji Tirkiyeyê re gotibû ku nabe Tirkiye piştgiriya El-Qaîde bike. Dibe ku Tirkiye bi awayekî nehênî hevkariya wan bike, lê wek cara berê bi awayekî eşkere nikarin hevkariya wan bikin, ji ber ku cara borî di aliyê siyasî de ew kar giran li ser Tirkiyeyê sekinî.

**Ev çend roj in meseleya damezrandina îdareyekê ji bo Rojava li holê ye. Ramana wê çi ye? Pêwist e yan tenê coş û heyecana we ye, piştî ku we li Rojava hinek destkeft bi dest xistin?**

Na, ev derencama şoreşekê ye ji bo rizgariya neteweyekê. Bi dîtina min, dem hatiye ku Kurd rêveberiya xwe dirust bikin. Ev nayê wateya damezrandina dewleteke ciyawaz li Sûriyê, lê pêwistiyeke Rojava ye. Wek mînak, jiyana civakî, aborî, tendirustî û pêdiviyên civakê divê bên rêkxistin. Rejîm nemaye, baş e kî wê van erkan bigire stûyê xwe? Heta îro me wek bizava civaka demokrate ev kar birêvedibir, lê îro em dixwazin hêzên din jî bibin şirîkên me, ji ber ku barekî giran e û pêwist e em bi hev re hilgirin. Gava em bangî hêzên din dikin tê çi wateyê? Tê wateya ku em rêveberiyeke hevbeş ava dikin. Wek mînak, dema çinîna genim hat, cotkar çi li genimê xwe bikin? Divê kesek hebe jê bikire û nan li sûkê dabîn bike. Ji bo vî karî û karên din divê rêveberiyek hebe, da ku xizmetguzariyan pêşkêşî hevwelatiyan bike. Tendirustiya civakê ne pirseke siyasî ye, heta ji bo piştî serkeftina şoreşê bê paşxistin.

**Çi pêdivî hene ku serkeftina wê rêveberiyê garantî dikin?**

Mezintirîn pêdivî ew e ku Kurd ev saleke xwe birêvedibin. Miletek heye li dora wê rêveberiyê kom dibe. Rejîm ji pirraniya deverên kurdî vekişiyaye, lewma divê em li çareyekê bigerin. Eger îdareyek dirust nebe û karûbarên civakê rêknexe, destkeft tên windakirin. Dîsa ev derfeteke, eger Kurd bikarneyînin, dibe ku derfeteke wiha dubare nebe.

Heta dema derketina çareseriyekê li Sûriyê, Kurd rêveberiya xwe dirust dikin, dûre gava li Sûriyê parlemento û hikûmetek dirust bibe, Kurd dikarin hevahengiyê ligel bikin û li ser siberoja Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê gotûbêjan ligel bikin. Kurd nikarin deverên xwe bê rêveberî bihêlin.

**Çend roj in li ser wê projeyê gotûbêj tên kirin, ev gotûbêj gihiştin çi astê?**

Bêyî ciyawazî em ligel hemû partiyên kurdî civiyan, ji ber ku ji bo damezrandina rêveberiyekê divê hemû alî tê de cî bigirig. Wek destpêk em dibêjin tiştekî baş e, lê em çaverê dikin ku em bi hev re projeyê amade bikin. Hêj me tenê proje amade nekiriye, em dixwazin di encama gotûbêjên ligel aliyên din de vê projeyê amade bikin.

**Lê we projeya destûrê nivîsand.**

Ew ji aliyê komîteyeke raspartî hatiye amadekirin, lê ne projeya destûrê ye, lê peymaneke civakî ye. Hin kesan li ser torên civakî navê wê kirin destûr, ew ne projeya me ye. Piştî lihevkirina ligel hemû aliyan û xwendina proje û pêşniyaran, bi hev re emê projeyê amade bikin.

**Gellek kes dibînin ku Rojavayê Kurdistanê di navbera berberiya Qendîl, Hewlêr û Silêmaniyê de asê maye. Dibe ku Rojavayê Kurdistanê bibe qurbana berberiya van hersê navendan. Hûn metirsiyeke bi vî awayî dibînin?**

Bawer nakim. Rojavayê Kurdistanê bi hêza xwe ev saleke navçeyên xwe rizgar kiriye. Xortên kurd bi hêza xwe navçeyan diparêzin. Asayiş hatiye damezrandin. Nakokiya wan derbarê siyaseta Rojava de nabînim. Bi berevajî vê yekê, ez dibînim ku ev hêz li ser gellek tiştan derbarê Rojava de hevpeyman bûn. Ewên ku ne hevpeyman bin, dibe ku çend partiyên biçûk ên nav Rojava bin. Eger sibe yek ji van 3 hêzan bixwaze bi awayekî din tevgerê bike, bêguman metirsî li ser Rojava pêk tê.

**Her rojê em dibînin ku Partiya Demokrat ya Kurd li Sûriyê - el-Partî (PDKSP) û PYD, herwiha Azadî û PYD di ragihandinê de hevdu tometbar dikin. Gelo ev di bingehê de ne nakokiya di navberea PKKê û PDKê de ye?**

Azadî partiyeke ku bi xwe dijminê Kurdan e. Kurd firotine û êrişî ser Kurdan dike. Li dijî Kurdan hevpeymanî bi opozisyonê re kiriye.

**Ew alî kî ye?**

Azadî çûye hevpeymanî bi hêzên çekdar re kiriye, ku dijminên Kurdan in. Di şerê Serê Kaniyê û şerê Helebê de eşkere bû. Ev grûpên çekdar hebûna Kurdan li Rojava red dikin. Azadî bi wan re hevpeyman e. Li gor zanyariyên ku di dest me de ne, çend kesên ser bi Azadî rêberiya çekdarên "Cebhet el Nusra" li derdora Rimêlan dikin.

**Navê wan kesan li cem we ne?**

Ew kes in ku li navçeyê naskirî ne. Hemû xelkên navçeyê dizanin ku bereya Nusre bi alîkariya karzanên Azadî tê navçeyê. Dîsa zanyariyeke din li ber destê me ye, lê em nizanin ka PDKSP hay jê heye yan na. Di şerê Çil Axa de, ew xortên kurd ên ku di nav rêzên YPGê de şer dikin û xelkê vê navçeyê ne, bi çavên xwe dîtin ku ewên li dijî YPGê şer dikin ser bi malbata Berhik in. Malbata Berhik li Rojava hemû di nav serokatî û rêberiya PDKSPê de ne. Di vî warî de me ji sekretêrê PDKSP Dr. Hekîm Beşar pirsî, gelo ew kes bi haydariya wan çûne şer yan na. Di nêrîna min de ew jî vê pirsê lêdikolin. Eger ev bi haydariya PDKSPê be, metirsî ye. Bi vê wateya ku PDKSP jî di vê êrîşê de beşdar in, em naxwazin ev pirs bi vî awayî be. Eger ne bi vî awayî be, divê PDKSP xwe ji wan bêsûc bike. Pêwîst e PDKSP bêje ev malbat hevalên me ne, lê xortên wan çûne rêza van grûpan û em pirsyariya wan naxin stûyê xwe. Eger sibe yek ji wan di şer de hat kuştin, nebêjin we endamekî me kuşt.

> **Eger YPG nebûya, îro wê Rojava ne di destê Kurdan de baya. Êdî damezrandina îdareyeke hevbeş pêwîstiyeke vê qonaxê ye û em nikarin xwe jê vedizin. Ev îdareya îro heye di destê aliyekî de ye. Em dixwazin vê modelê biguherînin û rêveberiyeke firehpartî pêk bînin.**

**Desthilatdarên Tirkiyeyê dibêjin pêkanîna hikûmeta kurdî li Sûriyê hêla sor e. We hisab ji bo karvedana Tirkiyeyê kiriye?**

Di daxuyaniyên fermî yên Tirkiyeyê de em diltengiya wê dibînin, dibêjin ne cihê qebûlkirinê ye ku rêveberiya kurdî pêk bê.

**Lê daxuyaniyên wan ne xurt in.**

Tirkiye di nav xwe de dest bi proseyeke çareseriyê kiriye. Kurd li nav Tirkiyeyê ji bo bidestxistina otonomiya demokratîk bi Tirkiyeyê re danûstandinê dikin. Ji ber vê yekê ti behane di dest de nîne ku destwerdanê di karûbarê perçeyekî din yê Kurdistanê de bike, ji ber ku hingî wê cihan jê re bêje tu di nav xwe de bi danûstandina bi Kurdan re mijûl î. Lewma nikare bi wê xurtiya berê li dijî Rojava rawest e. Ji ber ku eger vê bike, wateya wê wiha ye ku ew çareseriyê li Bakur pesend nake.

**Lê gotegot heye ku TEVDEM, piştî ku çiraya kesk ji Tirkiye û Sûriyê ji xwe re stand, vê projeyê dixe rojevê?**

Wek TEVDEM, em fêrî çiraya kesk û çiraya zer nebûne, ku ji ti aliyekî ji xwe re bistînin. Di dema berê de me ev nekiriye. Em li rewşê û li milet dinêrin. Pêwîstiya vê qonaxê çi ye, em wê dikin. Me doz li kesekî nekiriye ku çiraya kesk bide me. Em dibînin herdu alî di rewşekê de ne ku nikarin şer li dijî me bikin. Êdî derfetek heye û em hewla bidestxistina wê dikin.

**Nivîskar û dostekî we ji min re got "ez gellekî ji coşa PYD-TEVDEM derbarê vê projeyê de ditirsim. Ditirsim ku ev germî van herdu rêxistinan ber bi şaşîtiyên stratejîk ve bibe." Gelo hûn bi çavekî zêdrçûyî li vê rewşê nanêrin?**

Na. Me bi sozdarî ev gav ne daye ber xwe. Ev zêdetirî salekê ye ku ev navçe di destê Kurdan de ye. Lê heta îro me behsa vê projeyê nekir. Çima? Ji ber ku çavên me li derfeteke guncaw bûn. Em danûstandinê li ser vê rewşê dikin û biryarê didin. Ez bawer im ku em vê derfetê bidest naxînin, careke din pirr zor e ku ji Kurdan re ev derfet dubare bibe. Wek mînak, dema ku Encûmena Gel li Rojavayê Kurdistranê (EGRK) hate damezrandin, gellek kesan ji me re gotin hûn pirr germ in, hûn pirr lezê dikin. Her kes rexneyan li we dike. Dîsa dema ku Asayiş hate damezrandin, gotin hêj ne dema pêkanîna Asayiş e. Ji bo pêkanîn dadgehê bi heman awayî. Lê îro milet kêşeyên xwe tînin dadgehê. Wê demê jî rewşenbîran digotin hûn pirr lezê dikin. Dema YPGê hêza xwe pêk anî, her kesî ji wan re gotin hûn şaşîtiyê dikin. Tenê PYD-TEVDEM ji wan re gotin hûn karekî baş dikin. Eger YPG nebûya, îro wê Rojava ne di destê Kurdan de baya. Êdî damezrandina îdareyeke hevbeş pêwîstiyeke vê qonaxê ye û em nikarin xwe jê vedizin. Ev îdareya îro heye di destê aliyekî de ye. Em dixwazin vê modelê biguherînin û rêveberiyeke firehpartî pêk bînin.

**Lê ezmûna 2 salên borî ji we re got ku hevalên Rojava nînin. Vê demê me dengê hevgirtina Kurdan di nav partiyên Rojava de nebihîst. Eger alî li ser damezrandina vê hikûmetê li hev nekin, bijareya din a li ber destan çi ye?**

Dibe ku yek du alî red bikin. Hingî em guh nadin wan û em rêveberiya xwe pêktînin. Em nikarin ji bo wan rawestin. Ji ber ku pirr alî jî hene ku dibêjin em amade ne ji bo rêveberiyeke hevbeş.

**Ev alî kî ne?**

Bera em li benda encamên danûstandinan bin.

**Lê birêz Hemîd Hacî Derwêş, ku pirr nêzîkî we ye, vê projeyê red dike.**

Têbîniya wî li ser heye, lê proje red nekiriye. Ew dibîne ku beriya bibe rojev, pêwîst e danûstandin li ser bê kirin.

**Lê hindek dibêjin ku ev helwesta Hacî Derwêş reaksyoneke li dijî danûstandinên veşartî yên di navbera we û PDKSPê de?**

Ev bi nêrînên mamoste Hemîd ve girêdayî ye. Nikarim tiştekî din bêjim. Lê min bi xwe axaftin pê re kiriye, ew ne li dijî vê bîrokeyê ye.

**Li ser bûyera Amûdê pirr rexne li PYDê û YPGê hatin kirin. Li gor çend zanyariyan, ji bo xwe we dest bi lêkolînê kiriye, da ku li berpirsên vê bûyerê bipirsin?**

Rast e. Komîteya lêkolînê hêj mijûl e. Lê raporta xwe bi dawî nekiriye.

**Ev komîte ji aliyê Qendîlê ve pêk hatiye?**

Du lêkolîn hene. Yek ji wan giştî ye, bi ENKSê re dikin. Lê ewa din ser bi PYDê ye û dixwazin têbigihin ku çawa ev bûyer derket. Dîsa YPG û Asayiş mijûlî lêkolînan in. Qendîl û Herêma Kurdistanê haya wan ji vê pirsê nîne. Bi giştî gêre û aloziyek bû ku çend kesên sivîl jê ketin û ji me re cihê azar û dilgiraniyê bû. Me pêwendî bi malbatên wan qurbaniyan re kir. Em wan qurbaniyan weke qurbaniyên xwe dibînin.

**Ango hûn bûne beşek ji vê gêre û aloziyê?**

Dewriyeke YPGê bi rê ket, di wê deverê re çû. Nizanin rewş li Amûdê di wê demjimêrê de çi ye. Hindek xort diçin pêşiya wan û destdirêjiya ser wan dikin. Ew jî xwe diparêzin. Êdî gêre û aloziyek hebû ku ev grûp bû beşek jê. Lê pêwîst e ev alî û kes eşkere bibin ku ji ber wan ev gêre û alozî çêbû. Beriya vê bûyerê di facebookê û hindek deverên din de me bihîst ku hindek aliyan digotin bihara kurdî li Amûdê destpêdike. Me pêşbîniya tiştekî dikir. Lê me pêşbînî nekir ku wiha mezin be.

**Hûn gihîştin wê baweriyê ku divê ji bo bûyera Amûdê hûn doza lêborînê ji xelkê bikin?**

Em rêveberê vê navçeyê ne. Dema ku bûyerek li navçeyê diqewime, rêveberî tê de beşdar be yan na, neçar xwe wek berpirsyar dibîne. Hêjaye mirov ji milet re bêje ji ber ku ev bûyer di bin rêveberiya min de hatiye cih, ez doza lêborînê dikim ku min nikarîbû rê li ber bigirim. Ji ber ku rêveberiya navçeyekê divê re nede ku bûyerê bi vî awayî bibin.

*Hevpeyvîn:*
***Hêmin Xoşnaw***



Hejmarek mezin ji şervanên YPGê jin in.



Chris Kutschera:

# *Talebanî* gewdeyî hatiye dawiyê *Apo* jî siyasî... ...lê Kurd qebûl nakin

Nivîskarê frensî û rojnamevanê "Le Monde Diplomatique" Chris Kutschera ev 42 sal in ku li ser Kurdan dinivîse. Li ser Kurdan çar pirtûkên wî hene. Ya dawî ji serpêhatiyên wî yên bi siyasetmedarên dîrokî yên kurd re pêk te. Kutscherayê ku vê dawiyê bi xelata Mistefa Barzanî hat xelatkirin, di nav îro û borî de raman û bîranînên xwe bi me re parve kirin.

**Rûdaw: Ka em ji Tirkiyeyê destpêbikin...**
**Chris Kutschera:** Tişta min fêm nekirî, PKK çawa tiştek bidestnexistî Tirkiyeyê diterkîne? Kurd çawa vê rewşê daqurtînin? Ciwanên vedikişin çima li ber ranabin? Ya rastî aqilê Tirkan ne zêde ye, însanên ji rêzê ne. Ez qet fêm nakim. Wisa dixuye, heya ku Apo (Ocalan) li Îmraliyê be, wê Tirk her tiştî kontrol bikin.

Gava Mandela di girtîgehê de bû, pêşniyar biribûnê, da ku wî berdin. Lê bersiva wî ev bû: ***"Heya yek endamê partiya min di hundir de be, ez derketinê qebûl nakim"***. Dibe ku ev ji Apo re bibe nimûne.

**Herî dawî kengî çûyî Kurdistanê?**
Gulana borî ez li wir bûm. Bi gotina kurt: Iraq qediyaye. Şerê Şiî û Sunniyan dawiya Iraqê tîne. Ew rewş wê serxwebûna Kurdistanê bîne.

**Ji bo vê amadekariya Kurdan heye?**
Amerika, Frensa û Îngilîstan, ango hêzên rojavayî û Ereb, Kurdistaneke serbixwe naxwazin. Lê eger dawiya Iraqê were, di destê wan de rêyeke din namîne û bivênevê wê rewşa nû qebûl bikin. Kurd ji bo vê amade ne.

**Amadekariya Kurdan bawerî da te?**
Erê. Nêçîrvan û Mesûd Barzanî keysa petrolê baş bikartînin. Li Kurdistanê hebûna şirketên petrolê weke Chevron, Exxon û Gaspron, ji li wir ragirtina 10 hezar leşkerên amerikî bêhtir rewşeke guncaw diafirîne.

Lê dubendiya navxweyî talûkeyeke berdewam e. Gava tenduristiya Talebanî baş bû, kulîçe bihevre parve dikirin. Lê vêga ji ber rewşa tenduristiya wî, bêistiqrarî heye.

**Ev aloziya partiyên kurd dibe ku bigihije kîjan qonaxê?**
Hêviya min ev e ku tiştekî xerab nebe. Dibe ku Tevgera Gorran jî bibe sedema hin serêşiyan.

**Gorran hewqasî xwedî hêz e?**
Li Silêmaniyê ji YNKê zexmtir e.

**Te ji dostên kevin kî dîtin?**
Erê, ez rastî kevnedostan hatim; Nêçîrvan, Mesûd Barzanî û gellekên din. Xelata Mistefa Barzanî dan min.

**Evîna Kurdan kengî destpêkir?**
1971 bû. Cara ewilî bû ku ez diçûm Iraqê. Min dixwest herim başûrê Iraqê. Lê Baasiyan berê me dan bakur, gotin pêşî Mistefa Barzanî bibînin. Erebeyek û ajokarê wê dan me. Bi Kurdan re têkiliyên min wisa destpêkir.

Min hingî Mistefa Barzanî li Haci Omeranê nas kir. Menzela wî gellekî sade bû. Tê de maseyekî hesinî hebû. Rûyek avetibûn ser. Piyekî maseyê ji yên din kurttir bû. Ji bo bikarbariyê tuxleyek xistibûn bin wî piyî.

Li wir li mevanxaneyê min Qasimlû nas kir. Hingî li wir dima. Em bûn dostên gellekî nêz. Heya ku diya min jî nas kir. Ev e destpeka evîna min ya Kurdan.

**Tê ev bîranînên xwe bi Mesûd Barzanî re parve kirin?**
Erê. (Bi nîşandana wêneyên serdemê, biêş diçê kurahiya bîranînan).

**Têkiliyên bi Talebanî re?**
Tevlihev. Min di pirtûka xwe de (Le Mouvement National Kurde / Tevgera Neteweyî ya Kurd), li ser "cehşan" jî nivîsandibû. Ew jê aciz bibû.

**Haya te jî rewşa wî ya dawî heye?**
Wêneyekî wî weşandin. Nikare biaxive. Bi gewdeyî hatiye dawiyê. Apo jî bi siyasî. Lê Kurd qebûl nakin.

**Di gera te ya dawî de, tişta herî zêde bandor li te kirî çi ye?**
Geşedana aborî di asta lûtkeyî de ye. Beriya çend salan bi milyonan dipiviyan, vêga qala milyaran dikin.

**Tu çûyî derên ewilî?**
Ez çûm Hacî Omeranê. Li aliyê çiyê ve zêde neguheriye. Em çûn qebra Mele Mistefa Barzanî. Wê li wir muzexaneyekê ava bikin.

**Tişta xweşiya te neçûyî?**
Îro Kurdistan dişibe welatên Kendavê yên salên 1970an. Weke wê serdemê, îro li Kurdistanê di devê her kesî de tenê gotina pere heye.

**Mafên jinan?**
Min rewşeke tirsê nedît. Jin jî dikevin jiyana rojanê.

**Gellek çavdêr dibêjin ku serdem serdema Kurdan e...**
Gava hûn hatin, min tiştek dinivîsî. Min digot ku Kurdistana Bakur beşa herî bi şênî û xwedî ezmûn û serpêhatî ye, divê rola xwe ya motorî û ajovaniyê bileyize, lê mixabin naleyize. Pirseke din, li Bakur eger dewlet xweseriyekê bide Kurdan, wê sînorê xweseriyê li kû derê destpêbike? Ev pirsgirêkeke mezin e.

**PKK tiştên baş jî dike; konferansên neteweyî, daxwaza kongreya netewî...**
Bi ya min, zû an dereng wê Kurd biteqin, ji ber ku Tirkiye ne amade ye ku tiştekî bide. PKK jî ne amade ye ku ben bixe destê xwe.

**Kurdên Rojava...**
Li Sûriyê herêmên Kurdan ne li ser hev in, belavbûyî ne. Ev pirsgirêkek e. Em [ew û hevjîna wî] du caran çûne qempa Domîzê. Li wir dora sed hezar kes hene. Hikûmeta Başûr alîkariya wan dike. Komîseriya Bilind ya Penaberan ya NY ji alîkariya hikûmetê dilxweş e, penaber dikarin ji qempê derkevin, derfeta xebatê heye. Lê di konan de dimînin. Di baranê de her der dibe herrî. Di sermayê de diqefilin, di germê de jî nikarin di konan de bimînin. Mesûd Barzanî hatina wan nedixwest, ji ber ku Kurdistana Rojava vala dibe. Gotin hebûn ku Kurdên ji Sûriyê perwerdeya leşkerî dibînin, lê em nebûn şahidê tiştekî wisa.

Li Sûriyê hejmara Kurdan li dora 2 milyonan e. Her roj partiyekê ava dikin. Kurd her tim di wê baweriyê de ne ku tiştekî bidin wan. Divê li bendê nesekinin, divê bistînin.

**Ewropî çi difikirin?**
Frensa tenê bi boneya bazirganiya tiryak û însanan li ser Kurdan disekine.

**Kurdên Rojhilat?**
Partiya Qasimlû bû du, Komela jî sê beş. PJAK û Îran li hev hatin.

**Nêzîkbûna PKKê û YNKê bala te kişand?**
YNK piştgiriya PKKê dike.

**Kuştara Parîsê?**
Di rojên dawî de ez çûm civîneke Partiya Komunîst ya Frensayê. Beşdarekî di gotara xwe de qala kuştinên siyasî li Frensayê kir û got ku ew kuştin ti caran nayên ronîkirin. Di bûyera Qasimlû de şerkirin hebû. Lê di vê de Sakîne li ser palkursiyekî rûniştiye, ti şer an jî hevgijgijandin tine ye.

***Hevpeyvîn:***
***Selahattin Çelik***



"Min hingî Mistefa Barzanî li Haci Omeranê nas kir."

# Sê bajar, sê ezmûnên cihê



**Helîm Yûsiv**

Di van rojan de pêşdeçûnên bilez li Rojava qewimîn. Di encama hewildana çekdarên baskê El-Qaîde, Cebhetulnesra de, ku xwestibûn çend çekdarên Hêzên Parastina Gel YPGê bigirin, şerekî mezin çêbû. Di encama wî şerî de şervanên kurd bi temamî dest danîn ser bajarê Serê Kaniyê. Vê yekê, beriya her kesî Tirkiye qutifand û berpirsyarên dewleta tirk dest bi gefxwarinê kirin û behsa lîstika Partiya Yekîtiya Demokratîk PYDê ya bi agir re kirin. Ji hêla din ve jî projeya "xweseriya demokratîk" ku PYD amadekariyên pêkanîna wê dike, gengeşiyeke berfireh di nav hêzên rikberiyê yên ereb de vekir.

Van herdu rûdanan Kurd ajotin ber ezmûneke dîrokî. Eger em rewşa Efrînê ya ji hêla yekîneyên çekdarên îslamî û yên bi ser Artêşa Azad ve dorpêçkirî deynin aliyekî, sê ezmûnên hundirên li sê bajarên cuda ji herêma Rojava tên beramberî me. Ev bajar Serê Kaniyê, Amûdê û Qamişlo ne. Li van her sê bajaran sê pirsgirêkên cuda û ji hev cihê hene. Her pirsgirêkek bi awayekî ye û wisa jî divê bi awayekî taybet bê çareserkirin. Ji ber ku PYD bi hemû rêxistinên pê ve girêdayî hêza sereke û ya li pirraniya deverên kurdî desthilatdare, ev yek hem berpirsyariya wê mezin dike û hem jî ew alî ye yê ku çareserkirina van pirsgirêkan jê tê xwestin.

Di destpêkê de Serê Kaniyê, aliyê din Cebhetulnesra û çekdarên îslamî yên tundrew in. Li paş wan jî Tirkiye, Qeter, Siûdî û derûdorên rikberiya ereb yên bi ser wan dewletan ve. Divê PYD û hevalbendên xwe bi her awayî rê li ber vegera wan komên çekdar bigire. Ezmûna li pêşiya Kurdan li vî bajarî jî ev e. Vegera wan koman tê wateya têkçûna hewildanên Kurdan ji bo bidestxistina aramiyê.

Bajarê din jî Amûdê ye. Di 27.07.2013ê de û di encama bûyereke tirajedîk de, di navbera şeş heta heşt kesan şehîd ketin û bi dehan kes birîndar bûn. Ji bilî şervanekî YPG, yên din hin bi ser hevrêzên xortan yên girêdayî Encûmena Niştimanî ya Sûrî ve bûn, hin ji partiyên din mîna Yekîtî û hin jî bêalî bûn û bûn qurbaniyên wê êvara bixwîn. Li pey wê jî bûyerên girtina hin endamên Partiya Yekîtî û serbestberdana wan qewimîn. Ji bilî E. Tixûbî ku heta dema amadekirina vê nivîsê girtî ye.

Ji çawatiya qewimîna bûyerê bêhtir, dixwazim balê bikişînim ser encamê û pêdiviya çareserkirinê. Madem ne hêzên rejîmê û ne jî yên Cebhetulnesra rasterast li kolanên Amûdê amade bûn, diviyabû bi ti awayî gulle nehatibana berdan û xwîn neketiba nav xelkên kurd ên deverê xwe bi xwe. Nemaze ku Amûdê bi hin taybetiyên xwe tê naskirin, yek jê ew e ku hemû mîna endamên malbatekê hevdu nasdikin. Tevî ku wisa hate gotin ku gullebaran mîna reaksyonekê bû li ser kuştina ciwanê YPGê, lê tevî wêya jî, heta niha ez di wê baweriyê de me ku tetikkêşê ku dijberên PYDê dan ber gulleyan, wî berê çeka xwe raserî PYDê û projeya wê kir û gulle lê barandin. Ango zirara herî mezin ya siyasî û civakî û hetanî ya exlaqî jî PYDê dît. Ji ber vê, vê bûyerê siya xwe avête ser Serê Kaniyê. Ji ber vê, divê PYD vê bûyerê paşguh neke, lêbikole, zelal bike, sûcdarên bûyerê bên cezakirin. Her çendî wê nikaribe qurbaniyên bûyerê yên bêguneh vegerîne jiyanê, lê divê di çarçoveya dadweriyê de mafên wan çi bin li wan bêne vegerandin. Wisa jî bi rêxistinên din re, bi taybetî bi rêxistina Partiya Yekîtî ya Amûdê re, rûpelekî nû ji lihevhatin û bihevrekarkirinê bê vekirin. Ezmûna duyem jî ev e.

Sêyem bajar Qamişlo ye. Çavkaniya pirsgirêkê hebûna hêzên rejîmê ye. Bi hebûna wan di dilê paytexta Rojava de mirov nikare behsa rizgarkirineke bi temamî an azadiyê bike û bi şerkirina li hember wan jî wê seranserî herêmên Kurdan bibin armanca firokeyên şer yên xerakirin û kuştinê yên rejîmê. Dîtina çareseriyekê ji derketina ji nav van herdu agiran jî ezmûna sêyem û ya herî dijwar e. Heta çi redeyê wê Kurd karibin van her sê ezmûnên giran li van her sê bajarên xwe serkeftî derbas bikin? Çend roj û mehên pêş me wê bersiva vê pirsê bi xwe re bînin.

> **Madem ne hêzên rejîmê û ne jî yên Cebhetulnesra rasterast li kolanên Amûdê amade bûn, diviyabû bi ti awayî gulle nehatibana berdan.**

# Dema hilbijartinê ye li Kurdistana Sûriyê



**David Romano**

Armanca peymana havîna borî ya Hewlêrê yekkirina aliyên kurdî yên cuda yên Sûriyê bû, derbarê pirsên ewlekariyê. Temenê peymanê bû salek, wiha jî mirî dixûye. Kurdên Rojava ji Erebên sunî yên ku li dijî rêjîma Esed şer dikin hevgirtîtir derdikevin.

Raporên bêzarker derbarê şîdeta xwebixweyî ya Kurdên Sûriyê zû bi zû belav dibin. Ya dawî teqekirina YPGê bû li xelkên kurd ku li bajarê Amûdê li dijî PYDê xwepêşandan kirin. PYD vê yekê red dike, bêguman, hênceta wan ew e ku di nav xwepêşanderan de kesên çekdar hebûn û gule berdane wan. Çend raporên din jî behsa wê yekê dikin ku qaşo PYD wan kesayetiyên siyasî yên ku nêrîna wan cihê ye direvîne û karvedana PYD tund e li hember cudahî û rexneyan. PYD tê gunehbarkirin ku şêwaza Stalînî pêrew dike û baskekî PKKê ye ku fermanê ji serokê xwe yê girtî yê hezkirî û desteyeke nû hilbijartî ya serkirdeyên xwe werdigire.

Eynî bi heman şêweya destpêka jiyana siyasî ya PKKê di salên 1970 û 80an de, ku partiyên rikber kirin armanca xwe, berî teqandina fîşekekê li hember hêzên Tirkiyeyê, PYD tê gunehbarkirin ku dixwaze wek tekane hêza Rojava cih bigire. PYD û baskê wê yê leşkerî YPG vê yekê red dikin û dibêjin di vê demê de ew tekane hêz in ku dikarin Kurdên Sûriyê li navçeyên Heleb, Efrîn, Serê Kaniyê û navçeyên din biparêzin.

Dîrok nîşanî me dide ku tevgerên ji bo azadiya neteweyî li wan cihan serkeftîtir bûne, li cihên ku aliyekî karîbû hêzê zeft bike. Li Viyetnamê komunîstan pêşî hewl dan ku aliyên din ji nav tevgera azadîxwaz derxînin, tew endamên çekdar ên dêra katolîk ya Viyetnamê jî, ku nedixwestin fermanan ji wan werbigirin. Di encamê de karîbûn du hêzên dinyayê yên herî mezin têk bibin, Frensî û Amerîkiyan. Rêxistinên cihû jî li Filistînê heman kar kirin û bi ser ketin.

Lê digel hemû tevgerên azadîxwaz ên neteweyî ku hevgirtî û serkeftî bûn, çendê din jî hene ku tenê pê re gihiştine ku têk herin. Beriya sedsala bîstan Skotlandî, Îrlandî û Walizî agahdarî parçekirin û xwînrijandin û şikestinên bi vî rengî bûn, gava li dijî dagîrkeriya Ingilîzan şer dikirin. Îro dibe ku Filistînî hewcedarî çareseriyeke sê dewletî bin, wek diyar e Hemas û Feth li navçeyên di jêr kontrola wan de dijayetiya hev dikin. Kurd divê baştir ji her kesî vê yekê zanibin, dîroka wan a tahl mînak e. Bi taybetî ev ji bo PYDê tiştekî xwekujî dibe, eger hewl bide ku monopola hêza xwe li ser Rojava ferz bike, nemaze eger di wê proseyê de Kurdistana Rojava lawaz bikin.

PYD û YPG îro aktorên herî bihêz ên Kurdistana Sûriyê ne. Êdî çima bi rêya amrazên din yekîtiyê çênakin? Çima li navçeyên kurdî yên rizgarkirî li Rojava hilbijartinan saz nakin? Kurdên Başûr şanaziyê dikin ku sala 1992yê yekem hilbijartinên azad û dadperwer li tevahiya Iraqê birêvebirin, li jêr girantirîn rewş, tenê çend mehan piştî bidestanîna otonomiyeke de fakto.

Kurdên Iraqê dikarin hevkariya teknîkî dabîn bikin ji bo sazkirina hilbijartinan. Eger gumana PYDê ji wan hebe, dikarin çavdêrên kurd ên li ser aliyên Bakur û Rojhilatê Kurdistanê bînin nav proseyê, herwiha çavdêrên navneteweyî (eger ew bixwazin.) Tew beriya hilbijartina hikûmeteke demkî (divê pêgeh û kelemên aloz ên li ber Rojava li ber çav bên girtin), dikarin soz bidin ku kesekî ser bi YPGê bikin wek fermandarê giştî yê leşkerî, wek xelatekê ji bo rola wê grûpê di parastina asayîşa deverê de. Ev fermandar divê fermanan ji serkirdeyê sivîl yê hilbijartî werbigire, her çiqasî dibe ku serkirdeyê hilbijartî ne ser bi PYDê be. Hemû aliyên ku beşdarî hilbijartinan dibin, divê pêşwext bi encaman razî bin. Bêguman hemû hêzên çekdar ên kurdî divê bikevin jêr desthilata hikûmeta nû.

Dizanim pêşniyara tiştekî hêsan nakim, lê eger bikarin van hilbijartinan saz bikin, Kurdistaniyên Sûriyê wê têbînî û hevsoziya hemû cîhanê bi dest bînin. Û wê bibin xudanên yekem hilbijartina azad li Sûriyê ji sala 1950î û vir ve, nemaze eger çend nûnerên ereb û mesîhî hilbijêrin bêhtir nêzîkî mafê çarenûsê dibin.

> **Wê bibin xudanên yekem hilbijartina azad li Sûriyê ji sala 1950î û vir ve, nemaze eger çend nûnerên ereb û mesîhî hilbijêrin bêhtir nêzîkî mafê çarenûsê dibin.**

## ABB bi 30 milyon Dolar elektrîka Kurdistanê berfireh dike

**Koln (Rûdaw) -** Şirketa ABB ya swîsrî bi Zagros Energy re peymanek 30 milyon Dolarî imze kir. Li gor peymanê wê 4 navendên belavkirina elektrikê li Başûrê Kurdistanê werin berfirehkirin.

Piştî nûjenkirin û berfirehkirina navendên elektrikê tê çaverêkirin ku kapazîteya wan navendan bi 600 megawatt bilindtir bibe. Herwiha wê heman şirket di navendên herikandin û belavkirinê de sistema ewlekariyê bi teknolojiya herî nûjen modernîze bike. Di nav de wê pergala xwesarkirinê, mekanîzmeya kontrol û ewlekariyê jî hebe. Çav li rê ye ku di payîza îsal de xebatên ABB destpêbikin û proje bi aweyekî giştî di sala 2014ê de biqede.

Li gor daxuyaniya şirketa ABB, li Başûrê Kurdistanê pêdiviya elektrîkê salane ji sedî 10 heta sedî 25 zêde dibe. Niha kapasîteya tora elektrîkê ya li Başûr 2´750 megawatt (MW) e û ji sedî 90ê wê ji hêla şirketên taybet ve tê çêkirin. Armanc ew e ku di demek kurt de kapasîteya elektrîka Kurdistanê bigihije 4´000 MW û demdirêjî jî bibe 10´000 MW.



# Kurdistan li ser nexşeya geştyarî ya cihanê tine



**Wladimir van Wilgenburg / *London***

Hewlêr wek paytexta geştyarî ya erebî ji bo sala 2014ê hatiye hilbijartin, herwiha ji bo geşkirina jêrxaneya geştyarî bi buhayê zêdeyî 2 milyar Dolaran hilberîn ji aliyê sêktora taybet tê kirin, lê heta niha Herêma Kurdistanê nebûye cihê balkişandina welatên rojava.

Di konferanseke geştyarî de ku serê vê mehê li Londonê hat sazkirin û ji aliyê hikûmeta Herêma Kurdistanê hatibû piştgirîkirin, endamê parlementoya Brîtanyayê Nazim Zehawî got: “Îro li ser rê, gava dihatim vir, li dora London min rêklama gellek welatan dît ku welatên xwe wek navçeyên baş ji bo geştyariyê nîşan didan. Lê balkêş bû ku min Kurdistan di nav wan de nedît.”

Di van salên dawî de hikûmeta Herêma Kurdistanê dest bi avakirina jêrxaneya pêwist kir, da ku Kurdistanê bike cihekî geştyarî, lê heta niha tenê bala rojavayiyên serkêş û bazirgan û rojnamevanan kişandiye. Her çiqasî hikûmeta Herêma Kurdistanê dibêje di sala 2012ê de zêdeyî 2.2 milyon geştyaran serdana Kurdistanê kirine, lê pirraniya wan iraqî bûn, ên ku ji ber şîdetê reviyane, da ku demeke aram li market û parkên Kurdistanê di aştiyê de derbas bikin.

Li gor gotina serokê desteya hilberînê ya hikûmeta Herêma Kurdistanê, Hêriş Muherem: “Rêzeçiya û derbend û deştên Kurdistanê valahiyeke fireh ji bo havîngeh û derbaskirina demê dirust kirine. Herwiha ew aramiya ku li Kurdistanê heye, ligel seqaya wê ya hênik, Kurdistan kiriye cihekî baş yê geştyariyê.”

Nûnera Herêma Kurdistanê li Brîtanyayê, Beyan Samî Ebdilrehman, di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de got: “Gelê me heye, çanda me heye, gellek tiştên me hene, lê ew tişt bi şêweyekî wiha nehatine rêkxistin ku geştyar bikarin serdana Kurdistanê bikin.”

Brîtanya yek bû ji wan welatên ku ji pêşî de xwestiye nûnerê wê yê dîplomatîk li Hewlêrê hebe, lê heta niha ti geşteke ezmanî ya rasterast di navbera Brîtanya û Kurdistanê de tine. Beşekî vê ji ber pîvana bilind a asayişa Brîtanyayê ye, lê nûnera Herêma Kurdistanê li Brîtanyayê got: “Em geşbîn in ku ev kêşe wê bên çareserkirin.”

Wek îspatek ji bo aramiya Kurdistanê, karbidest dibêjin ku êrişa dawî ya terorîstî ku li Herêma Kurdistanê pêkhatiye, beriya 10 salan bû. Lê Kurdistan hêj bi Iraqê ve girêdayî ye û li Iraqê jî nearamî û şîdet belav e.

Şêwirmendê sereke yê Komeleya Rojhilata Navîn (MEA) Davîd Loyd dibêje, ew hewl dide ku wêneyê Kurdistanê biguhere, lê “medyaya Brîtanya ne hevkar e, ji ber ku pirraniya wan nûçeyên ku derbarê Kurdistanê de belav dibin, nerênî ne. Pirraniya xelkê agahiyên wan ên baş derbarê Kurdistanê de nînin.”

### “Baştir e Kurdistan wek beşekî Iraqê neyê behskirin”

Li gor wezareta derve ya Brîtanya, Kurdistan bê kêşe ye. Rêvebera bazirganî û hilberînê ya Brîtanyayê Krispin Simon got: “Têbîniyên wezareta derve derbarê Kurdistana Iraqê de ne nerênî ne û ne rêgir in li ber geşt û gerê.”

Li gor rêvebera şîrketa KBC, Helena Bird, ku şîrketeke geştyarî ya navdar a brîtanî ye, ji Kurdistanê re baştir dibe eger wek beşekî cihê ji Iraqê xuya bike: “Di aliyê geştyarî de wiha baştir e eger navê Kurdistanê wek beşekî Iraqê neyê hildan, lê berevajî Iraqê bê behskirin. Wek cihekî bê behskirin ku nêzîktirîn cih e ji Tirkiyeyê û wan cihên ku hevwelatiyên brîtanî ji bo geşt û gerê serdana wan dikin.” Helena Bird got: “Pêwist e hikûmeta Herêma Kurdistanê berdewam be di belavkirina wan zanyariyan de ku dibêjin Keleha Hewlêrê cihekî pirr kevnar e û tê bawerkirin ku cihê cihanê yê herî kevn e. Herwiha dikarin behsa çiya û sûlavan jî bikin eger bixwazin. Lê çiya û sûlav li her cihî hene. Lewma baştirîn peyam kevnariya bajêr e.”

Li gor parlementer Nazim Zehawî, ji ber dîroka zengîn a Kurdistanê “divabû li deverê navenda geştyariyê hebûya. Pêwist e Kurdistan ligel wan welatan pêşbaziyê bike ku salane zêdetirîn geştyar serdana wan dikin. Wek mînak bajarê Petra, ew bajarê dêrîn yê Urdunê ku di sala 2007ê de 500 hezar kesan serdana wî kir, di demekê de ku Keleha Hewlêrê bi 4 hezar salan ji Petra kevintir e.”

Rêvebirê şîrketa geştyarî ya Step Travel, Paul Kraven, buhabûnê wek sedema kêmbûna geştyaran li Kurdistanê dibîne: “Mêvanxane pirr giran in, rênîşander doza pereyên zêde dikin û kirêya guhastinê jî zêde ye. Lê xwarinên kurdî pirr xweş in.”

# Vexwarinên saxlem bidin zarokên xwe!

Ji bo ku pergala laşê zarokên temenê wan heta şeş salî baş bixebite, pêwist e rojane derdora 1 lître av vexwin. Bi mezinbûna temen re divê zarok bêhtir avê vexwin. Kesên kêm avê vedixwin, zû konsentrasyona xwe ji dest didin, laş û mejiyê wan bêtaqet dibe û xewa wan tê. Herwiha ji bo ku laş bikaribe maddeyên di laş de sistematîk veguherîne, pîleya gerima laş kontrol bike, xwînê bigerîne û xwarinê baş biserifîne, pêwistî bi vexwarina avê heye. Ya herî girîng jî ew e, ku pêşiya mirov têhn bibe, divê mirov avê vexwe. Ji xwe pêşiya têhnbûnê laş işaretê dide ku pêwistiya avvexwarinê heye. Av têhnkuja herî baş e lê gellek cureyên din yên vexwarinan yên ji bo laş saxlem jî hene:

## Ava madenê ji ya mislixê saxlemtir e

Li gor ava ku ji mislixê diherike, di nava ava madenê de bêhtir maddeyên ji saxlemiyê re baş hene. Di dema xwêdangirtin û sporê de, laş van maddeyan winda dike. Ji bo ku kêmasiya maddeyan ya laş ji holê rabe, vexwarina ava madenê ji bo tenduristiyê gellekî saxlem e. Ava madenê ava asayî ya ji kaniya diherikê ye. Lê ji ber ku ava mislexê di gellek boriyan de derbas dibe, heta digihije malan, gellek maddeyên di nav de ji nav winda dibin. Ji vê çendê ava madenê ji ya mislixê saxlemtir e.

## Ava fêkî bi xwe çêbikin

Li pirraniya firoşgehan ava fêkî tê firotin. Ya giring ew e ku li ser qotîka avê nivîsandibe ku av ji sedî sed ji fêkî pêk tê. Herwiha pêwist e mirov hay jê hebe ku şekir tevlî ava fêkî nehatibe kirin. Eger derfetên mirov hebin û bikaribe ji fêkiyên taze avê çêbike, wî wextî pêwistî bi ava hazir jî namîne. Herwiha ku ava fêkî ya ku mirov bi xwe çêbike dijwar be, qet ziyan nîne ku mirov avê jî tevlî bike û wisa vexwe. Digel ku vîtamîn û maddeyên baş di nava ava fêkî ya sade de pirr in jî, divê mirov bizane ku di nav de gellek kalorînên ku mirovan qelew jî dikin hene. Wekî mînak di nav 200 mîlîlîtreyên ava sêvan de enerjiyeke hevqasî ya kevçiyekî bestanî heye. Ji vê çendê ya baş ew e ku mirov hinek ava mislixê yan jî ya madenê tevlî ava fêkî ya sade bike. Bi vê yekê bêhtir têhna mirov jî pê dişikê.



Pispor didin zanîn ku ya baş ew e ku ji 3 parên ava fêkî ya sade, parek ava madenê be.

## Çaya reş nedin zarokan

Di nava çaya reş û ya kesk de maddeya koffeînê heye. Ji wê yekê dive mirov bizanibe ku vexwarina zarokan ya van çayan bi ziyan e. Di vî alî de çaya herî saxlem çaya mîna ya tûtirk, tûerdk û pirteqalan e. Herwiha divê dêûbav heta ji wan were hindik şekir bikin nava çaya zarokên xwe. Ku qet şekir neyê tevlîkirin hêj baştir e.

## Nehêlin zarok Colayê vexwin

Vexwarinên wekî Colayê û cureyên din yên avên şêrîn pirranî ji şekir pêk tên. Di her qotîkek Colayê de 15 şekir hene. Ji vê çendê heta ji dêûbavan were, pêwist e nehêlin ku zarokê wan cureyên vexwarinên bi vî rengî vexwin. Ev yek jî girêdayî hunera perwerdekirina zarokan ya dêûbavan e.

## Şîr cihê xwarinê jî digire

Zarok ne tenê bi şîr têne mezinkirin, lê di temenê mezin de jî vexwarina şîr saxlem e. Di nav şîr de madeya kalsiyum ya ku hestî û dinanan bihêz dike heye. Ji hêla din ve di nava qedehek şîr de 130 kalorîn hene. Ji vê çendê pêwist e şîr ne wekî vexwarina asayî li ser zarokan were ferzkirin. Divê bi çavê cureyekî xwarinê lê were nêrîn. Ji ber vê taybetmendiyê, zarok beyî xwarina edetî bixwin jî, ji şîr têr dibin.



## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Cîh û şûna leperûşk û nenûkan, Yarmetî, pêçûn, piştdan. **2-** Pozîtîf, baş – Pirsgirêk, problem – Na, nabe (berepaş). **3-** Bi rêya telefonê kopîkirin û şandin – Heywanek hov. **4-** Xwedayek Sumeran (berepaş) – Kemançe, keman – Di Îslamê de mezhebek. **5-** Cemidî, êdî ne germ e. **6-** Notayek muzîkê - Keçmam, keça apê. **7-** Redkirin, nabe, nexêr – Navekî jinan. **8-** Lez û bez, zû, navekî zilaman – Namûs, agir. **9-** Qelew, petatî – Tunekirin, qirkirin. **10-** Çavgirtî, bi nezanî (berepaş).

**Serejêr: 1-** Mala ji darik, hestî yan têlan (bi taybet ji bo çûk û teyrikan tê çêkirin) – Di matematîkê de hejmarek. **2-** Agir e, dişewitîne (berepaş) – Resenî, payebilindî. **3-** Amadekarî, tedarik – Navekî zilaman. **4-** Navekî jinan (berepaş) – Zehmetî, dijwarî (berepaş). **5-** Stranbêjek jin "....Wîlde" (berepaş) – Hacetek muzîkê – Alet û hacetek muzîkê (berepaş). **6-** Deng, awaz – Dînî, bawermendî. **7-** Medenîyet, bajarvanî. **8-** Kanî, avzêm (berepaş) – Notayek muzîkê – Notayek muzîkê. **9-** Tiştên ji bajarê Hamadanê (berepaş). **10-** Xwarin, febrîqa ard – Kam, derdê dil û mejî. **11-** Tiştên hişk ji lastîk û plastîkê. **12-** Pê por tê rastkirin (berepaş). **13-** Mêr didin serê xwe. **14-** Dij, dijî. **16-** Malbatî, ji dê û bav derbasbûna zarokan (berepaş)

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 2 | | | | | | ■ | | | | | | ■ | | | ■ | |
| 3 | | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | ■ | | | ■ | | | | | | ■ | | | | ■ | |
| 5 | | | | | | ■ | | ■ | | ■ | | | | | | |
| 6 | ■ | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 8 | ■ | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 9 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 207

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | I | H | S | A | N | N | Û | R | Î | P | A | Ş | A | ■ | K | O |
| 2 | N | E | R | M | Î | ■ | D | Û | ■ | Ê | Ş | A | N | D | I | N |
| 3 | S | ■ | E | S | M | E | R | ■ | Z | ■ | Î | N | ■ | A | V | A |
| 4 | A | S | T | A | R | ■ | O | C | A | X | ■ | O | S | M | A | N |
| 5 | N | A | ■ | X | E | T | ■ | E | N | E | | | | | | |
| 6 | ■ | L | A | ■ | Ş | E | R | W | A | L | | | | | | |
| 7 | A | N | R | Î | ■ | M | A | L | ■ | K | | | | | | |
| 8 | S | A | D | ■ | G | A | Z | I | N | ■ | | | | | | |
| 9 | Î | M | I | L | E | Ş | ■ | K | O | N | | | | | | |
| 10 | D | E | L | A | L | E | T | ■ | K | A | | | | | | |

# Piyanîsta biçûk, xewnên mezin



Ez di sala 2005ê de li paytexta Rûsya Moskowê ji dayik bûme. Birayek û du xuşkên min hene. Niha ez li Moskowê diçim dibistanê û di polê duyem de me. Ev du sal in ku ez diçim kursa piyanoyê. Ez ji mûzîka klasîk gellekî hez dikim. Ez dikarim hin berhemên Çaykovskiy, Schubert, Mozart, Bach û Beethoven lêbixim. Ligel lêdana piyanoyê ez di koroyê de stranan jî dibêjim û dixwazim di meziniya xwe de bibim stranbêjeke bi nav û deng li seranserê cihanê.

Di jiyana min de dê û bavê min her li pişt min radiwestin û piştgiriya min dikim. Ez gellekî ji wan hez dikim. Ez dixwazim ku hemû dayik û bav jî her bi zarokên xwe re bin.

## Hûn dizanin şempaze hertim mirovan mat dike?





Şempaze eger baş bê perwerdekirin, heya hejmara 10ê dikare bijmêre û 300 gotinan dikare ji hevdu cuda bike. Gava dilê wan biçe gûzê, weke mirovan gûzê dişkinîn û navka wê dixwin. Lêkolîner dibêjin ku şempaze ji bo xwe "gundên xwezayî" ava dikin û kevneşopa her gundî ji yê din cuda ye. Wekî din lêkolîner dibêjin ku şempaze aletên curbecûr jî bikartînin û tiştê ku dizanin weke mirovan fêrî zarokên xwe jî dikin.

### Hûn dikarin navê van ajalan di nav qûtîkan de binivsînin?





### Di navbera wêneyên jêrê de 8 cudatî hene. Hûn dikarin van cudatiyan bibînin?

